## Hevpeyvîna bi Murat Karayilan re

12/13

"Eger rast e pirraniya Kurdan bi AKPê re ne, fermo werin em referandûmê li dar bixin."


Wêne: Rûdaw


Hejmar / Nr. 129
12 Çile / Januar 2012

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora


10

تەمەنی یەک ساڵ و نیوە

ئەندامی نێرینەی سەهەند لێکرایەوە و خورا

Deutschland 1,50 Euro | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Şêwazê Nû

# Siyaseta şekir û kamçî




4 / 5









00001
4 191631 701506
01
9 771869 104000
Great Britain

Nûçe, raport û hevpeyvînên taybet. Herroj, 24 saetan.

Rûdaw.net

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

## ROJ TV weşana xwe berdewam dike

# Dîcle: Doz bi dawî nebûye

Dibe ku Tirkiye serî li Sekreteriya Medyayê bide bo lîsansê betal bikin

**Azad Dîcle**

Dadgeha paytexta Danîmarka Kopenhag roja sêşema borî biryara doza girtina Roj TV eşkere kir. Dadgehê Roj TV bi propagandaya PKKê tawanbar kir, lê lîsansa wê betal nekir. Rêveberiyê Giştî yê Roj TV Amed Dîcle ragehand ku ew ê weşana xwe berdewam bikin, lê Tirkiye ji biryarê nerazî ye û dibe ku doz bidome.

Dadgeha Kopenhagê biryara doza girtina Roj TV di 10ê Çileyê de, ango di Roja Rojnamevanên Cîhanê de, eşkere kir. Dadgehê diyar kir ku daxwaza betalkirina lîsansa Roj TV û desteserkirna 20 milyon Euroyên Roj TV li derveyê yasayê ne, lê bi sedema "propagandaya PKKê" derdorê 700.000 Euro ceza li herdu şîrketên ku bernameyên ROJ TV çêdikin birî. Rêveberiyê Giştî yê Roj TV Amed Dîcle ji Rûdawê re ragehand ew ji biryara betalnekirina lîsansa weşanê kêfxweş in, lê got, "dibe ku dozger biryarê bibe temyîzê. Herwiha îhtîmala wê yekê heye ku Tirkiye serî li Sekreteriya Medyayê bide da ku lîsansa me betal bikin. Bi hinceta ku em propagandaya PKKê dikin di du xalan de cezayê pere me birîn. Me ev ceza heq nekiriye. Li Ewropayê pîvanên azadiya ramanî diyar in û li gor yasayên Ewropayê azadiya weşana nêrînên cuda heye. Dema em cih bidin nêrînên cuda divê ev nebe sedem ku em bên cezakirin an jî bên astengkirin. Dibe ku em jî îtiraza vê biryarê bikin."


Amed Dîcle

Dîcle diyar kir ku Serkonsulê Tirkiyeyê yê Danîmarkayê Ahmet Berki Dibek jî di rûniştina dawî ya dadgehê de amade bûye û Dibek paşê ragihandiye ku Tirkiye ji biryarê nerazî ye û ji bo betalkirina lîsansa Roj TV wê serî li Sekreteriya Medyayê bidin.

### Dozger çûbû Tirkiyeyê

Di 31ê Tebaxê de Wezîrê Dadê yê Danîmarkayê Lars Berfoed li ser daxwaza serdozgerê Kopenhagê piştî lêpirsîneke 5 salan biryara dabû ku li dijî Roj TV doz bê vekirin. Di heman rojê de jî dozger Soerensen biryara dastdayîna ser hesabên Roj TV yên bankeyê dabû. Lê li ser îtiraza Roj TV, di 19ê Cotmeha 2010ê de dozê dest pê kir. Dozger dixwaze bi hinceta ku "Roj TV propagandaya PKKê dike û ji aliyê rêxistinê ve tê fînansekirin" were girtin û hemû tiştên wê bibe malê dewletê. Di doza ku ji 114 xalan hatiye vekirin de, tê îdîakirin ku Roj TV bi awayekî organîk bi rêxistinê ve girêdayî ye. Di dema lêpirsînê de li ser daxwaza rayedarên dewleta tirk dozger çûbûn Tirkiyeyê û bi hin îtîrafkaran re xeber dabûn.

Parêzerê Roj TV jî di pêvajoya dozê de dabû diyarkirin ku doz siyasî ye û bal kişandibû ser hevdîtinên zêde yên di navbera Danîmarka û Tirkiyeyê de.






# Berpirsên şewitandina xwaringeha Kurdan MHPyî ne?



**Koln (Rûdaw) -** Malbatek kurd li bajarokê Hessisch Lichtenau li Almanyayê bi şewata xwaringeha wan ji aliyê kesên nenas ve derbasî sala 2012ê bû. Di bûyere de 4 kes birîndar bûn û lêpirsînên polîsan didomin. Gumana destpêkê: Alîgirên partiya nijadperest a tirkî MHP.

Roja sersalê (1ê Çile 2012) saet çarê serê sibehê, li bajarokê Hessisch Lichtenau yê li nêzîkî bajarê Kasselê, agir bi xwaringeh û mala malbatek kurd ket. Wê şevê xwediyê xwaringehê yê 25 salî ne li malê bû, lê herdû xuşkên wî yên 21 û 22 salî li mala xwe ya di qata yekê de bûn, herwiha dêbavên wî jî wê şevê mêvan bûn.

Xwediyê avahiyê yê alman yê 70 salî beriya her kesî bi şewatê hesiya û ji jerê kevir avêtin camên malbata kurd û ew hişyar kirin. Dema ku tîmên hawarçûnê digihijên cihê bûyerê, 4 kesan xwe ji nava malê rizgarî ser şaneşîna malê kiribûn lê agir rêya revê li wan girtibû. Ji ber ku herçar kesan dûmana şewatê kişandibûn, ew rakirin nexweşxaneyê.

Piştî ku polîsên bajêr li du cihan li ser dîwarên avahiya şewitandî nîşanên partiya nijadperest a tirkî "MHP" (Milliyetçi Hareket Partisi) dîtin, ew ketin gumanê ku dibe sedema şewatê siyasî be û ji ber aciziya ji xwedanên xwaringeyê yên kurd avahî hatibe şewitandin.

Li ser vê yekê polîsên almanî yê tawanan (Kriminalpolizei)jî ketin dewrê û dest bi lêkolînan kirin. Heta niha lêkolînên polîsan negihiştine ti encamê, lê polîsên almanî nexwestin îhtimala sedemek siyasî pûç bikin. Li gor pêşbîniya polîsan zirara 150 hezar Euro li xwaringehê û malê bûye.

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

## Di 8 salan de 4733 pêşmerge û endamên PDK û YNKê hatine kuştin

*Rûdaw - Li gor wan hejmar û statîstîkên ku Rûdawê ji liq, melbend, komîte û navçeyên PDK û YNKê li deverên cihê nakokiyê bidest xistine, piştî rûxandina Saddam, ev herdu partî rastî zêdetirîn êrîşên grubên çekdar û tundrew bûn û gellek ziyan gihaye wan. Berpirsên herdu partiyên desthilatdar ên Kurdistanê li wan herêmên nakokiyê, dema 8 salên borî karê xwe weke “jiyana di nav agir de” binav dikin. Tevahiya deverên veqetandî li parêzgehên Nînewa, Kerkûk û Diyala ne. Ji van hersê deveran Nînewa baştirîn zemîna grubên tundrew bû da ku derbeyan li baregehên PDK û YNKê bixin.*
*Li gor wan amar û datayên baregehên YNK û PDKê, piştî ruxandina rejîma Saddam di sala 2003ê de, PDK û YNKê li deverên veqetandî 4733 kadro û pêşmerge û endamên xwe winda kirine, 465 caran jî êrîşî baregeh û mala kadroyên wan hatiye kirin.*

## Berpirsê Ewropayê yê PYDê: Newaf Xelîl

# Em nabêjin di KHNGê de her tişt bi dilê PYDê ye

Hêzên serekî yên kurd di nav Encumena Niştîmaniya Sûriyê (ENS), Komîteya Hevrêziya Niştîmanî ji bo Guherînê (KHNG) û Encumena Niştîmaniya Kurd (ENK) de belav dibin. Ji bo naskirina nêrîna Partiya Yekîtiya Demokrat PYD ku wek alîgira PKKê tê naskirin û di heman demê de endamekî girîng e di KHNG de, endamê rêberiya Ewropayê Newaf Xelîl pirsên Rûdawê bersivand. Xelî behs kir bo çi KNHG baştir li pirsgirêka kurd dinêrê û got, “KHNG qet qala wê rastiyê nake ku herêmeke Sûriyê parçeyek ji Kurdistana mezin e.”

Yek ji cudahiyên di nav daxwazên KHNG û ENK de di Sûriyeya nû de dabeşkirina sîstema desthilatdariyê ye. PYD bi rêya KHNG daxwaza nenavendiya îdarî dike, di dema ku hin alî nemaze di ENK de vê daxwazê nêzîkî sîstema berê ya îdareya herêmî dibînin loma daxwaza desthildariyeke nenavendî ya siyasî dikin. Di vê derbarê de Newaf Xelîl ji Rûdawê re got hîn berî ku ew vê daxwazê derxin projeya wan ya xweseriya demoqratîk hebû û wiha dom kir: “Gava em daxwaza xweseriya demokratîk dikin ew ya siyasî ye. Ji bo daxwazên Kurdan em vê baş û munasib dibînin, lê eger rojek hat û gelê me bi tevahî got em ne pê re ne ev tiştekî din e. Lê eger em bêjin her tiştên ku di destûra Sûriyê de hatine nivîsandin şaş in, ev nabe, lê rejîm wan yasayan pêk nayne, ew ji endamên partiya Baas re jî pêk nayne. Tecrûbeyên Ewropayê jî hene û tecrubeyên mirovatiyê jî hene, ji bo em li Sûriyê mafên xwe misoger bikin û rewşê sererast bikin, divê em di çarçoveya giştî ya vî welatê ku em tê de dijîn bifikirin, ne maqûl e em bêjin xweseriya demokratîk ji bo Kurdan baş e, lê ji bo Deraa û Humsê nabe!”

**“Burhan Xelyûn qebûl nekir navê Kurdan wek neteweya duyem bê qebûl kirin”**

Herdu hêzên ereb ENS û KHNG, ku Kurd beşekî wan in, roja sersalê peymanek li Misrê îmze kiribûn û li gor wê lihevkirinê sozên kevin yên ji bo çareserkirina pirsgirêka kurdî pûçkiribûn. Ev peyman bûbû serdema astengiyên mezin yên rêxistinî di nav hêzên ENS de, astengî ne ji ber xala Kurdan, lê ji ber xalên din peydabûbûn û baweriyek xurt heye ku serokatiya Burhan Xelyûn bibe qurbanê wê şaşiyê. Newaf Xelîl di vê derbarê de got: “Guftûgoyên ku çêbûn, bi amadebûna 4 rêberên Komîteya Hevrêziya Niştîmanî KHNG, yek ji wan Salih Muslim serokê PYD, û amadebûna serokê Encumena Niştîmanî ya Sûriyê Burhan Xelyûn pêk hatibûn. Kesên ku bi israr qebûl nekirin ku navê Kurdan wek neteweya duyem bê qebûl kirin Burhan Xelyûn bû. Ez vê dibêjim û belge û isbat li ser vê hene. Berê KHNGê gotiye ku hebûna Kurdan wek beşekî ji hebûna civakî û ya dîrokî ya Sûriyê ye, divê li ser vî bingehê em Kurdan li Sûriyê bipejirînin. Lê biraderên me yên ENS, hebûna Kurdan qet nedipejiriandin, û yên gelekî israr dikirin ku ev mesele bê qebûl kirin Dr. Heysem Manaa û Dr. Ebdulezîz Xêr bûn.”



Berpirsê Ewropayê yê PYDê Newaf Xelîl

**Hesen Ebdulezîm: Mafê Kurdan di dewleta Kurdistanê de mafekî rewa ye û mafê Ereban jî di welatê Erebî de**

Li aliyekî din bendeke balkêş di belgeya lihevkirina hêzên KHNG de heye ku çareserkirina pirsgirêka kurd bi qebûlkirina Sûriyê wek parçeyek ji welatê Erebî ve girê dide. Gelek partiyên kurd ev nêrîn “ne di cih de” dîtin lewra ji KHNG dûrketibûn, nemaze ku KHNG qet qala wê rastiyê nake ku Sûriye herêmeke wê parçeyek ji Kurdistana mezin e. Di vê xalê de Xelîl aaxaftina Serokê KHNGê Hesen Ebdulezîm ya di hevpeyvîneke xwe de bi bîr anî û got, “Ew bi rengekî wiha dibêje ku mafê Kurdan di dewleta Kurdistanê de mafekî rewa ye û mafê Ereban jî di welatê Erebî de rewa ye, lê niha em herdû ji bo Sûriyeya pêşerojî kar dikin. Lê di heman demê de berdevkê Biraderên Musilman (Endamê ENS) Zuhêr Salim dibêje ‘Em Sûriyê napejirinîn’ û Semîr Neşar yek ji endamên ragehandina Şamê û ENS dibêje ‘Netewperestên ereb ditirsin ku pejirandina Kurdan wek neteweya duyem li welêt rê veke ku Kurd daxwaza parçebûn, yan îdareya xweser yan jî federaliyê bikin’. Em nabêjin hertişt di KHNG de li gor dilê PYDê ye, lê niha beşê ku hebûna Kurdan qebûl dike di Komîteya Hevrêziyê de baştir û zêdetir dibe û ez bawerim di pêşerojê de jî wê tiştên baştir bibin.”

> **Daxuyaniyên Artêşa Sûriyê ya Azad dibin sedema alozkirina rewşê, wek bûyerên li Şamê**

**“ENS eşkere dibêje têkiliyên wan bi Tirkiyeyê re hene ”**

Li ser têkiliyên KHNG bi Komara Îslamiya Îranê rê Newaf Xelîl dibêje “Turkiye nîvê welatê Kurdan dagîr dike û beşekî Sûriye jî dagîr dike. KHNGê di dema dawî de berpirsyarên dewleta Îranê dîtin, lê tiştek heye, gava tu ji hêla aborî û ramyarî serbixwe bî kesek nikare agendên xwe ser te ferz bike. Weke ku rayedarên 62 dewletan dîtine, yên Îranê jî dîtine. Em ji wan jî fêm bikin, ji ber em di vê herêm de ne, lê ti pirsgirêkên KHNG tunene Tirkiye jî bibînin helwesta xwe ji wan re bêje. Lê hewldana ku bêjin zilamê kesekî ne, ew helwdan, Encumena Niştîmanîya Sûriyê di dûv de ye, ji bo ew têkiliyên bi Tirkiyeyê re dikin xwe hinekî rûsipî bikin. Hevdîtin tiştek e û têkilî tiştek din e. ENS eşkere dibêje têkiliyên wan bi Tirkiyeyê re ne, navenda wan li Tirkiyeyê ye û hemû civînên wan li wê derê ne, gelo bo çi Tirkiye piştgiriya aborî bide wan?”

Di dawiya axaftina xwe de Xelîl nerazîbûna xwe ji Artêşa Sûriyê ya Azad nîşan da û got, “Navê vê artêşê mîna nivîskarê Kurd Candost dibêje, weke ku Artêşa Sunî ya Azad be, serdarên wan hemû Sûnnî ne û navên ku li xwe dikin hesasiyeta netewî û olî peyda dikin, ango çima navê Hemza Alxetîb li xwe nakin, çima navê Mîşel Temo yan navê Qaşûş li xwe nakin? 6000 hezar şehîdên şoreşê hene. Ji xwe daxuyaniyên wan jî dibin sedema alozkirina rewşê, wek teqînên dawî yên Şamê çêbûn.”

# Konsepta AKPê ya nû:

# *Siyaseta şekir û kamçî*

**Firat Baran** Enqere

Di dema nîqaşên li ser budceya sala 2012yê de, li ser navê hikûmeta AKPê cîgirê Serokwezîrê Tirkiyeyê Bulent Arinç diyar kir ku nasnameya kurdî qet nebe ji hezar salan zêdetir e li ser vê xakê heye û got, "Kurd dibe, Ereb dibe, Boşnak dibe, çi tê aqilê we bila bê, kî li vî welatî dijî dikare bi hêsanî nasnameya xwe bîne ziman. Em ê hurmetê bidin wan nasnameyan. Em ê hemû mafên destûrê, hemû mafên çandî bidin xwediyê wan nasnameyan." Piştî çend rojan jî Beşir Atalay, wezîrê dewletê yê ku ji ewlekariyê berpirsiyar e, ragehand ew li ser pakêteke nû ya demokratîk kar dikin û wê di demeke nêzîk de pêşkêş bikin. Lê Atalay derbarê naveroka pakêtê de tiştek negot. Van herdu daxuyaniyan di nava raya giştî ya Tirkiyeyê de pirsa gelo hikûmeta AKPê dîsa amadekariya "rêvekirineke demokratîk ya nû" dike, derxist holê.

Di demekê de ku li çiyayan li dijî gerîllayên PKKê operasyonên berfireh tên kirin, li bajaran di çarçoveya Doza KCKê de bi hezaran siyasetmedarên sivîl û bi dehan rojnameger tên girtin, behskirina hewldanên demokratîk weke tiştek nakok xuya dike. Lê di rastiyê de ev herdu hewldan jî pêngavên stratejiyeke nû ne. Ji ber ku konsepta AKPê ya derbara Pirsgirêka Kurd de "konsepta şekir û kamçiyê" ye. Ango, li aliyekî siyaseta ewlekariyê bi tundî tê meşandin û li aliyê din wê gavên demokratîk bên avêtin. Rayedarên AKPê bi fermî ji raya giştî re behsa vê siyasetê nakin, lê di hevdîtinên taybet de behsa vê konseptê dikin. Mirov dikare li gor referansên rayedarên AKPê konsepta nû wiha vebêje:

Rêvekirina demokratîk ya ku hikûmetê di sala 2009ê de destpê kir, li Xabûrê hat birîn. Atmosfera serkeftinê ya ku PKKê da pêşiya xwe, di raya giştî ya Tirkiyeyê de bû sedemê nerazîbûnan. Herwiha PKK difikirî ku ew çiqas çalakiyan pêş bixin, wê hikûmet neçar bimîne bê ser maseyê. Hikûmetê jî piştî hilbijartinên 12ê Hezîranê 2011 polîtîkaya xwe ya Pirsgirêka Kurd guherand û li dû çalakiya Farqînê ku tê de 13 leşker hatin kuştin, dest bi konsepta xwe ya nû kir. Ev konsept beriya her tiştî, ligel operasyonên leşkerî di hêla şer de, lawazkirina PKKê dike armanca serekî. Li bajaran jî bi operasyonên KCKê lingê wê yê siyasî lawaz dike. Armanc ne tunekirina PKKê ye, lê dixwazin wê lawaz bikin, qels bikin û marjînal bikin. Eger ev ling bi ser keve, ango kamçî bi dawî bibe, paşê wê dora siyaseta şekir were. Hêvî ew e PKK ya ku hatiye lawazkirin wê daxwaziyên xwe kêm bike û wê raya giştî jî êdî nebêje ku hikûmet li ber PKKê neçar dimîne û di dawiyê de jî hikûmet wê bibe xwediyê însyatîfê û gavên demokratîk bavêje.

Niha hikûmet di wê baweriyê de ye ku polîtîkaya kamçiyê encamên girîng derxistine û bandoreke erênî peyda kiriye, ango PKK li çiya hêza xwe winda kiriye û li bajaran jî nikare weke berê tevbigere, lewma hikûmet hewl dide ku dest bi polîtîkaya şekir bike. Gotinên Arinç û Atalay tên wateya vê siyasetê.

### Du pengavên "polîtîkaya şekir"

"Polîtîkaya şekir" ji du pêngavan pêk tê. Pakêta demokratîk ya ku Beşir Atalay behs kir, pêngava yekemîn e. Tê çaverêkirin ku di meha Adarê de anjî piştî Adarê ev siyaset ji raya giştî re bê pêşkêşkirin. Ligel ku naveroka paketê hejî ne diyar e, lê tê çaverêkirin ku pêvajoya dadkirinê bê lezgînkirin, dozên kesên girtî zûtir bighijin encamê, Yasaya Dijî Terorê û Yasaya Ceza ya Tirkiyeyê, yên ku astengî li pêşiya ramana azad derdixin, di ber çavan re bê derbaskirin û navên gund û waran yên kurdî şûnde bên dayîn. Eger ev yasa têkevin pratîkê, wê gellek girtiyên Doza KCKê bên berdan û navê hinek cîh û waran bên dayîn. Ev pêngav wê di siyaseta kurdî de deriyê nermahiyê veke. Li ser vê nermahiyê jî dibe ku careke din rêya diyaloga bi PKKê re bê vekirin.

> **Li aliyekî siyaseta ewlekariyê bi tundî tê meşandin, li aliyê din wê gavên demokratîk bên avêtin.**

Piştre wê pêngava duyemîn, ya ku Bulent Arinç behs kir, dest pê bike. Pêngavên ku Arinç behs kirin, ji ber tenê bi rêya guherandina makezagonê dibin, ev pêngav wê di pêvajoya guhertina makezagonê de bên nîqaşkirin. Di vê çarçoveyê de meseleya perwerdeya bi zimanê zikmakî û xweseriya demokratîk, eger ne weke ku BDP behsê dike be jî, wê bikevin rojevê. Mînak, di dibistanên taybet de wê perwerde bi zimanê zikmakî bê pejirandin, lê di dibistanên fermî yên dewletê de ew maf wê nebê, tenê li ser daxwazê wê perwerdeya bi kurdî hebe. Ango wê hemû perwerde ne bi kurdî be, lê eger daxwazî ji hejmareke zêde ya şagirtan were, wê dersên kurdî bên dayîn. Wê otonomî nedin Kurdan, lê rêvebiriyên herêmî wê bên xurtkirin û rewşeke weke nîv otonomî wê bikevê rojevê.

Komîsyona Amadekariya Makezagonê ya ku ji nûnerên AKP, CHP, MHP û BDPê pêk tê, niha li nêrînên saziyên civakî guhdar dike. Komisyon piştî ku guhdariya van nêrînan kir, wê ji meha Gulanê pê ve dest bi amadekariya makezagonê bike. Ev jî wê heta dawiya salê bidome û destpêka 2013ê de dibe ku makezagona nû bê pejirandin.

Hinek AKPyî diyar dikin ku hêzên tarî yên wek Ergenekonê ku di nava saziyên dewletê de cihên girîng bidestxistine, hêj bi giştî nehatine lawazkirin, ev hêz ji siyaseta AKPê ya ewlekariyê razî ne, lê ji siyaseta demokratîkbûnê aciz in. Heman çavkanî guman dikin ku komkujiya Roboski ji ber van sedeman ji aliyê van hêzan ve hatibe kirin.

Li gor nîqaşan tê çaverêkirin ku asta herî dawî ya vê pêvajoyê bêçekkirina PKKê ye. Tê fikirîn ku pêngavên demokratîk wê di nava Kurdan de bibin sedema ku şerê çekdarî êdî neyê xwestin û wê gel daxwaz ji PKKê bike ku şer rawestîne. Lewma tê çaverêkirin ku ji bo gerîllayên PKKê efûyek giştî bê rojevê. Serokê PKKê Abdullah Ocalan wê li derveyî vê efûyê bimîne, lê wê şert û mercên wî bên nermkirin û dibe ku wî têxin hepsa malê.

Konsepta AKPê ya nû bi kurtahî wiha tê destnîşan kirin. Pêkanîna vê konseptê jî hinekî bi taktîk, helwest û hewldanên PKKê ve girêdayî ye. Herwiha pêşketinên siyasî yên ku li Rojhilata Navîn rû didin, ew jî wê rolek girîng bileyîzin.



Bulent Arinç


Wêne: Rûdaw

## Parlementerê AKPyê yê Amedê Galip Ensarioglu:

# Arinç li ser navê hikûmetê axivî, çi pêwîst bike wê bê kirin!

*Parlementerê AKPyê yê Amedê Galip Ensarioğlu diyar kir ku pêvajoya pêşîvekirina demokratîk her çiqas dem bi dem qut bibe jî, lê dom dike. Ensarioğlu gotinên Serokwezîr Recep Tayyip Erdoğan ên weke "Çi dibe bila bibe, ev pêvajo wê bidome" bi bîr xist û destnîşan kir ku hikûmet bi biryar e vê pêvajoyê bibe serî. Ensarioğlu bal kişand ku Alîkarê Serokwezîr Bülent Arinç gotina "Li Tirkiyeyê Tirk xwedî kîjan mafî bin, Kurd jî wê xwedî heman mafan bin" li ser navê hikûmetê gotiye û da zanîn ku ev gotin wê hem di makezagona nû de û hem jî di pakêta demokrasiyê de bi cih bibe.*

**Rûdaw: Alîkarê Serokwezîr Bülent Arinç di hevdîtinên budceyê de, di meclisê de got "Tirk xwedî kîjan mafan bin, Kurd jî wê xwediyê heman mafan bin". Alîkarê Serokwezîr Beşir Atalay ku berpirsyarê pêşîvekirinê ye, eşkere kir ku wê pakêteke demokrasiyê bê vekirin. Hikûmet amadekariya pêşîvekirineke nû dike?**

**Galip Ensarioğlu:**Di raya giştî de xeletfêmkirinek heye: pêvajo qut bû lê pêvajoya pêşîvekirinê bi dawî nebû. Mixabin dema tundî zêde dibe, alozî derdikevin û ev pêvajo qut dibe. Lê ti caran hikûmetê dev ji vê pêvajoyê bernedaye. Jixwe dema hikûmetê ev îrade eşkere kir, Serokwezîr got "Çi dibe bila bibe, ev pêvajo wê bidome". Ji ber vê yekê di pêvajoya hilbijartinê de, ji ber atmosfera hilbijartinê, ev pêvajo hinekî qut bû. Lê piştî hilbijartinê serokwezîr dîsa eşkere kir ku ev pêvajo wê bidome. Bi taybetî jî axaftina Birêz Arinç a di meclisê de, li ser

> **Di raya giştî de xeletfêmkirinek heye: pêvajo qut bû lê pêvajoya pêşîvekirinê bi dawî nebû.**

navê hikûmetê bû. Wî ev axaftin li ser navê xwe nekir. Ev axaftin di hizûra Birêz Serokwezîr de hatiye kirin. Di wê axaftinê de îfadeyên pirr zelal hene. "Li Tirkiyeyê Tirk xwedî kîjan mafan bin, Kurd jî wê xwedî heman mafan bin. Ji bo vê yekê çi pêwîst bike, wê hikûmet bike". Piştî vê axaftinê Birêz Beşir Atalay, ku pêvajoya pêşîvekirinê bi rê ve dibe, eşkere kir ku ew di nava amadekariya eşkerekirina pakêteke nû ya demokrasiyê de ne.

**Di pakêtê de wê çi hebin?**

Di vê pakêtê de wê li ser mafên azadiya derbirînê, derbarê têkoşîna li dijî terorê de, tiştên ku pêwîst nake di makezagonê de cih bigrin, hin sererastkirin bên kirin.

**Di pakêtê de wê perwerdehiya zikmakî jî hebe?**

Mafê perwerdehiya zikmakî û ravekirina welatîbûnê, mijareke siyasî ye û divê di makezagonê de bê çareserkirin. Bi beşdariya hemû partiyan komîsyona makezagonê hate avakirin. Ev komîsyon bi awayekî erênî vê pêvajoyê dimeşîne. Ev pirsgirêk wê li wir bên çareserkirin.

**Di komîsyonê de divê hemû partî li hev bikin. CHP û MHP li dijî guhertina hin xalên makezagonê ne. Di rewşeke wiha de, wê di vê komîsyonê de makezagoneke ku pirsgirêkan çareser bike, derkeve?**

Di makezagonên demokratîk de xalên ku neyên guhertin çênabe û divê xaleke wiha tune be. Tekane tiştekî ku neyê guhertin heye; ew jî desthilata Xwedê ye û ev jî ji bo bawermendan wisa ye. Eger makezagon ji bo miletan be, divê dewlet daxwazên gel bi cih bîne û gel çi bixwaze, ew tişt pêk bê. Kesên ku xalên divê neyên guhertin dixin makezagonê, baweriya wan bi gel tune ye. Di vê komîsyonê de endamên hemû partiyan wê pêşî li ser xalên ku li hev dikin biaxivin û piştre xalên din ên ku li ser li hev nakin, bînin rojevê. Niha li ser xalên ku li hev dikin, xebat tên meşandin.

**Hûn li aliyekî dibêjin wê pêvajoya demokratîkbûnê bidome û ji aliyekî ve jî polîtîkayên ewlekariyê li pêş in. Operasyon zêde dibin û di çarçoveya operasyonên li hemberî KCKê de gellek kes tên girtin. Ev yek bi xwe re şik û gumanan tîne...**

KCK, PKK bi xwe ye û rêxistineke derzagonî ye. Hemû kes divê bizanibe ku kesên di nava KCKê de kar dikin, encamên vê yekê dizanin û ev encam dane ber çavên xwe. Bila herkes li ser navê wan xemgîn nebe. Eger kesek xebatên derzagonî bike, wê ji encamên vê yekê jî razî be. Hemû pirsgirêk ev e; dema ev tişt tên kirin, bê rêk û pêk tên kirin. Carnan girtina siyasetmedaran wijdanê raya giştî aciz dike, diêşîne. Girseya ku ray dane wan, vê yekê weke mudaxaleya li hemberî îradeya xwe dinirxîne. Divê ji kesên ku siyaset weke rêbazek ji xwe re hilbijartine re fersend bê naskirin, rê bê vekirin. Di nava van girtiyan kesên weke şaredarên Şirnex, Êlih û Serokê BDPa Amedê Firat Anli, Serokê Komeleya Mafên Mirovan a Amedê Muharrem Erbey û akademîsyen Büşra Ersanli jî hene. Ev kes nasên me ne, em hev nas dikin. Eger hûn van kesan bigrin, hûn ê wijdanê raya giştî biêşînin. Pêvajoya darazê didome. Kesên ku vê yekê dimeşînin rasterast ne hikûmet e. Ev bê rêk û pêkî zirarê dide me jî. Eger dadgerek pêvajoya darazê ya 3 sal in didome ji ber parastina bi kurdî bixitimîne, ev yek nayê qebûlkirin. Ji bo dadger a girîng îfadeya kesan e. Ew îfade bi kîjan zimanî hatibe dayîn ne girîng e. Lê mixabin li Tirkiyeyê tiştên wiha dibin, divê ev tişt bên serastkirin.

> **BDP bila li dijî me muxalefetê bike, lê bila tiştên li derveyî wijdan nebêje, ev yek nayê qebûlkirin. Eger hikûmet fermaneke wiha bide, yekem kesê ku li dijî derkeve, ez im. Ma tiştekî wiha dibe?**

**Li gundê Roboskiya Qilebana Şirnexê 35 sivîl hatin qetilkirin. Ji bo vê yekê hate gotin "qezaya operasyonê" ye. Hin kesan got "MÎTê Serfermandariya Artêşê şaş agahdar kir". BDPê jî got dewletê komkujî bi plan kiriye. Li gorî we çi bû?**

Hikûmet berpirsyarê îradeya dewletê ye, eger berpirsyariyek hebe, divê hikûmet vê berpirsyariyê bigre ser xwe. Eger di vê bûyerê de îhmal, xeletî hebe, divê ew kesên ku ev xeletî û îhmal kirine, bên cezakirin û zirarên mexdûran jî bên tanzîmkirin. Ji ber vê yekê hikûmetê ji roja ewil de vekolîna edlî û îdarî da destpêkirin, bi ser vê bûyerê de diçe. Ji bo ku ser vê bûyerê neyê girtin, çi pêwîst bike, hikûmet dike. Kesên ku dibêjin hikûmetê ev komkujî plan kir, bêwijdaniyê dikin. BDP bila li dijî me muxalefetê bike, lê bila tiştên li derveyî wijdan nebêje, ev yek nayê qebûlkirin. Eger hikûmet fermaneke wiha bide, yekem kesê ku li dijî derkeve, ez im. Ma tiştekî wiha dibe?

**Gelo dibe ku hin kesên dixwazin hikûmetê tengav bikin, ev tişt kiribin?**

Helbet dibe. Ji vê bûyerê herî zêde hikûmetê zirar dîtiye. Li Tirkiyeyê berê jî tiştên wiha çêbûn. Di 30 salên dawî de tiştên wiha çêbûn.

**Gelo kê ev yek kir, dibe ku Ergenekonê kiribe?**

Gumanên bi vî awayî hene. Em dizanin ku di nava dewletê hin çete hene. Lê ev çete êdî hesab didin. Serfermandarê Artêşê yê berê hate girtin. Hikûmeteke wika heye ku li pêşberî qanûnê hemû kes wekhev e. Divê qîmeta vê yekê bê zanîn.

**Serfermandarê berê hate girtin lê serfermandarê nû weke serokê partiyeke siyasî derbarê pirsgirêka welat de axaftina xwe didomîne...**

Ji vir û şûnde wê herkes hedê xwe bizanibe. Demokratîkbûn di rojekê de çênabe. Ev pirsgirêkeke kulturî ye. Divê elimandinên wiha terk bikin. Herkes divê peywira xwe bi cih bîne, memûr memûrtiya xwe, siyasetmedar divê siyasetê bike.

***Hevpeyvîn: Firat Baran** (Enqere)*

**Gotinên Arinç ên di hevdîtina budceyê, di meclisê de, wê di pakêta demokratîkbûnê û makezagonê de bi cih bên, an na?**

Helbet, helbet wê bi cih bên. Hikûmeta me bêyî ku li benda makezagonê bisekine, wê hin tiştên ku hewcedarî bi guherînên makezagonê tune ye yek bi yek bi cih bîne. Ev yek wê bi rêya pakêda demokratîkbûnê bi cih bên. Mijarên ku guhertina makezagonê eleqedar dike jî wê di makezagona nû de cih bigrin.



# Ciwanên Mereşî ji kurdî dûr dikevin

Gursel Yumlî Dortmund

» Kultura tirkî bûye serdest. Herkesek rêzefîlmek wî yê tirkî heye û dema fîlm di televizyonê de destpê dike hemû kar û axaftin tên rawestandin

Bi dehan gundên Pazarcik, Elbistan û Afşîna ser bi Mereşê di salên 80yî de vala bûn û niştecihên van gundan yên kurd berê xwe dane welatên Ewropayê; nemaze Almanya, Swîsre û Brîtanyayê. Tenê li Almanya li bajarê Kolnê, Durenê û Leverkusenê bi hezaran Kurdên elewî yên ji gundên Pazarcikê dijîn. Saime Renklitepe jî yek ji van Kurdan e ku berê li gel malbata xwe li Durenê dijiya û paşê mala xwe birin bajarê Dortmundê. Malbata Renklitepe ji gundê Çigliya di navbera Mereş û Pazarcikê de ye û di sala 1990î de hatine Almanya. Ew bihev re bi kurdî, bi devokê Mereşê diaxivin, lê Saime Renklitepe dide zanîn ku ew niha neçar e ku bi gelek ciwanan re bi tirkî an jî bi almanî diaxive. Ew dibêje, "Her dice axaftina kurdî di nava ciwan û zarokên Mereşî de kêm dibe."

### Li cem parêzgeran carina wergerê dike

Saime Renklitepe bi roj li cem komeke parêzger sekreteriyê dike û êvaran jî diçe dibistana kosmetîkê. Dibistana ku ew diçe 6 mehan dom dike û di dawî de eger bi serkeve wê dîplomeya kar bidestbixe û, "Ez ê karibim bi serê xwe ev kar bikim."

### Li mal bi kurdi, li kar bi almanî, bi xizman re bi tirkî

Saime Renklitepe li cem çar parêzgerên alman wek sekreter dixebite. Bêtirê muşteriyên wan Alman in lê ew dibêje, "Carina muşteriyên kurd jî tên û dema ku baş bi almanî nizanibin ez bi wan re kurdî diaxivim û wergere dikim." Renklitepe dide zanîn ku ew zehmetî di wergerê de nakişîne û kurdiya wê tê ecibandin û wiha dom dike: "Hinek kes carina dibêjin ku kurdiya herêma Mereşê zêde asîmîle bûye, tê de zê de peyvên tirkî hene. Lê min heta niha bo Kurdên Serhedê jî, Kurdên Botanê û heta bo Kurdên Başûr jî werger kiriye. Ti kesê jî negotiye em te fahm nakin."

Weke gellek Kurdên li Ewropayê dijîn, Saime Renklitepe jî di jiyana xwe ya rojane de sê ziman bikartîne. Weke ew dibêje, li malê bi dêbav, xuşk û birayên xwe û bi zarokên wan re bi kurdî diaxive, li buroyê bi almanî û bi nas, dost û xizmên re jî pirrî caran bi tirkî diaxive. Renklitepe bi bîr dixe ku heta çend sal berê jî wê bi gelek nas û xizmên xwe yên Mereşî re bi kurdî diaxivî, lê dibêje, "Ev çend sal in ku di nava gelê me yê Mereşî de axaftina bi tirkî dest pê kiriye. Navên tirkî li zarokên xwe dikin, muzîk û kultura tirkî zêde bala wan dikişîne; kesên ku ez bi wan re bi kurdî biaxivim hema bêje nemane. Mînak her kes bo xwe rêzefîlmek dîtiye û dema ew rêzefîlm di televizyonê de bê weşandin, hemû kar û axaftin tên rawestandin."

### Rûdawê di navbera rojnameyên tirkî de dîtiye

Weke ew dibêje, di salên 90î de Kurdên Mereşî li Almanya di nava tevgera Kurd de gellek çalak bûn û bi baldarî çand û kultura kurdî dişopandin, lê ew niha xemsariyek û sarbûnek dibîne û dibêje, "Di şûna ziman û kultura kurdî de niha kultur û zimanê tirkî ketiye pêş."

Saime Renklitepe demek berê li îstasyona trênan ya bajarê Dortmundê Rûdawê dîtiye û yek jê kirriye. Ew dibêje ku di destpêkê de di xwendina kurdî de hinek zehmetiyan kişandine, lê dema ku Rûdawê di navbera çendîn rojnemeyên tirkî de dîtiye pê re hestek netewî şiyar bûye û bo piştgiriyê rojnameyek kiriye. "Ez ê hewl bidim ku xwendina xwe ya kurdî pêşbixim da ku ji bo zaraok û ciwanen derûdora xwe bibim mînak."


Wêne: Rûdaw

Saime Renklitepe ji tunebûna hevalên kurdîaxêf xemgîn e


Wêne: Rûdaw

# Dêrsim 1938 Xo Vîra Meke!

» Dogan: Em xweseriya Dêrsimê dixwazin

Ciwan Tengezar Berlin

Roja yekşema borî, 8ê Çileya 2012yê Dergahi Ana Fatma bi bernameyeke dewlemend bi slogana "Dêrsim 1938 Xo Vîra Meke!" dergaha xwe bi hevkariya 'Înîsiyatîfa azadî bo Dêrsimê' li Berlînê da nasandin.

Bername bi axaftina damezrêner û birêvebir Cahit Akyar dest pê kir. Akyar di axaftina xwe de qala dîrok, bawerî û xweseriya Dêrsimê kir. Piştre Prz. Erdal Dogan, Nivîskar Lerzan Jandil û Derhêner Ozgur Findik derbarê komkujiya Dêrsimê de bîr û baweriyên xwe anîn ziman. Axaftin bi zaraveyê zazakî û tirkî hatin kirin.

Parêzer Dogan ev salek e di warê huquqî de di qada navnetewî de bi parêzerekî amerîkî re xebat dike, daku Qirkirina Dêrsimê bê nasandin. Dogan got ku divê beriya herkesî divê pêşî Dêrsimî qirkirinê qebûl bikin. Dogan got, "Yên ku bûyera 38ê weke qirkirin bi nav neke û rola sereke ya Mustefa Kemal nebêje, divê em di derbarê wan kesan de bikevin şikê. Ji sala 2008ê ve qirkirina Dêrsimê di rojevê de ye û hin kes dibêjin peykerekê li Dêrsimê bê çêkirin û lêborîn bê xwestin û xilas. Lê em wiha qebûl nakin û di demeke nêz de doza Dêrsimê dibin dadgeha navnetewî."

Dogan di dawiya axaftina xwe de diyar kir ku referansên wan kesên wek Îsmail Beşikçi, Munzur Çem û Mehmet Bayrak in û got, "Em ji aliyê olî (qizilbaş), nasname (kurd) û îdarî ve xweseriya Dêrsimê dixwazin, "Ji ber ku di dîrokê de hertim xweseriya Dêrsimê hebû."

Derhênerê fîlmên belgeyî Qelema sur û Kara Vagonê Ozgur Findik jî diyar kir ku siyaseta taybet a dewletê li ser Dêrsimê berdewam dike. Findik got, "piştî valakirina gundan di sala 94ê de li Dêrsimê dewletê li ser Dêrsimiyan siyasetekê din meşand da ku ciwanên kurd ji nasname û siyasetê dûr bikevin. Ciwanên di navbera 18-30 salî de balî, tîner, xeşxeş bi kar tînin."

### Dixwazin kursên sazê, semahê û felsefeya qizilbaşiyê bidin

Damezirenêr û birêvebirê komela Dergahi Ana Fatma, Cahit Akyar derbarê avakirina komeleyê de got li Berlînê pêdiviyek hebû ku komeleke bi vî rengî ava bikin. Wî got, "Ne fermî ye, lê li Berlînê kêm û zêde 80.000 Kurd hene ku gellek ji wan elewî ne. Saziyên heyî nûnertiya qizilbaşiya Dêrsimê nakin."

Niha cihekî wan tune ye, lê Akyar da zanîn ger ew cihekî ji bo dergahê bibînin, dixwazin zarok û keç û xortan hînî felsefe û baweriya qizilbaşên kurd bikin. Wî got, "Em herwiha pilan dikin ku semah, kursên sazê, kursa zimanê kurdî (kurmancî, kirmanckî/zazakî) çar sirên sereke ya bingeha baweriyê me, çar derî, çil meqam û hwd. bidin."

Piştî bêhnvedanê beşa hunerî bi axaftina hunermendên ciwan Pinar Yildiz û Şengul Pak berdewam kir. Herdu hunermendan kilam û stranên zazakî stîrin û piştre jî fîlmê belgeyî yê Ozgur Findik bi navê Kara Vagon hate nîşandan. Bername bi axaftina şahidê qirkirina Dêrsimê Pir Mahmud bi dawî bû.

# 2011 bo Kurdên Swêdê bû sala xelatan

» Sê Kurd di beşên cuda de ji bo xebatên xwe yên sala borî li Swêdê xelatên balkêş wergirtin. Yek sportvan, yek derhêner û yek jî projeçêkerê şaredariyê ye.


Bawer Çoşkun


Burhan Yildiz


Karzan Kader

Nesrîn Rojkan Stockholm

Sala borî çendîn Kurdên rûnistevanên Swêdê bi xebat, serkeftin û xelatên xwe balê kişandin. Hinekan fîlman çêkirin, hinek li dû gogan bezdan, hinek jî bi dengê xwe lorandin û bi neynikên xwe kedan dan. Di dawiyê de du kes û klûbeke futbolê li Swêdê xelatên balkêş wergirtin û di çapemeniyê de behsa wan hat kirin.

Tîma futbolê Dalkurd FF yek ji wan xelatgiran bû. Roja ku Galayê Nobelê bû û hemû xelatgirên Nobelê li benda xelata xwe ya gewre ya Nobelê bûn, tîma Dalkurd jî xelatek ku alternativa Nobelê ye "Rebels inre frids pris 2011" ango "Xelata serhilderî ya aramiya navxweyî" wergirtin. Sedema xelatgirtinê jî alîkariya Dalkurdê bo erdheja Wanê bû. Dalkurdê bi mebesta alîkarî bigihîne gelê kurd li Wanê, maçekê taybet organîze kir. Maç di navbera Dalkurd FF û kesayetên navdar yên Swêdî de hat leyîstin. Di vê çalakiyê de nêzikê 250 hezar kron (25 hezar Euro) hat civandin û ev alîkarî gihişte destê goriyên Wanê. Xelata "Rebels Inre Frids Pris" ya sala 2011ê, yek ji wan kesan ku vê çalakiyê lidarxistibû, Bawer Coşkun Roj wergirt.

## Kurdek bû lehengê salê li Stockholmê

Xelatek din ya ji bo Kurdan watedar e ku Kurdek bûye lehengê Stockholmê. Burhan Yildiz di şaredariya taxên Spånga -Tensta de kar dike ku piraniya şêniya wê herêmê jî biyanî ne. Navê bîyaniyan li Swêdê derketiye ku li hawirdora xwe nabin xwedî û qirêj dikin. Burhan Yildiz dibêje ku ev ne wisa ye û li herêma xwe projeyek dide destpêkirin. Herkesek di aliyê xwe de hawirdora xwe pak dikin û xwedî dikin. Projeya bi navê "Järva rent och snyggt" ango "Järva pak û rind."

Hersal rojnameya bêpere Metro lehêngê sale bi xwendevanên xwe dide hilbijartin. Vê carê piraniya xwendevanan dengê xwe dane çalakiya Burhan Yildiz û ew kirin Lehengê Salê yê Jîngehê ya sala 2010ê. Sala 2010 Stockholm paytexta jîngehê ya Ewropayê bû û dema Burhan Yildiz bû lehêngê Stockholmê, ew otomotîk bû lehengê Ewropayê hemû. Yildiz bi dilgeşî hestên xwe parve kir û got, "Hestekî bêhempa ye ku ez bûme yekemîn lehengê rastîn! Diviya ku proje bixwe vê xelatê werbigire lê xweş e ku vê çalakiyê bal kişandiye û ev nîşan ketiye cihê xwe ya rast. Em dibînin ku xebat vala naçin."

**Kurdên ku xelat wergirtin: Bawer Coskun Roj, Burhan Yildiz û Karzan Kader**

## Bo Burhan dar çandin

Herwiha 29ê Tebaxê sala 2011ê jî darekî manolyayê bi navê Burhan Yildiz li parka Serafîmê hate çandin. Nivîsa ser tabelaya ber dara manolyayê ev bû: "Dar ji bo pehlîwanê jîngehê hatiye çandin. Ev dar ji bo şerefa Burhan Yildiz hatiye çandin. Di sala 2010ê de ku Stockholm paytexta jîngehî ya Ewropayê bû, ku ew ji aliyê Stockholmiyan ve wek lehengê jîngehê ji bo projeya xwe ya Järva Rind Pak hatiye hilbijartin."




## Fîlmê Zana û Dana

Derhênerek kurd Karzan Kader jî di warê xwe de xelatek girîng girt. Ji xelata wî re dibêjin Oscar a Xwendevanan Student Academy Awards. Fîlmê kurt bi navê Bekas li ser du birayên kurd e ku di dema rejîma Saddam de sebî û bê mal in. Herdu bira Zana û Dana fîlmê Superman dibînin û paşî dixwazin biçin serdana Supermanê li Amerikayê. Yek ji wan şîroveyan di rojnameyek de dibêje ku "fîlmekî rengîn e û bi ritmên muzikî ve dagirtiye ku rêyek dinyayek nû ji welatên rojava re vedike."



# Diyarbakirspor li benda FIFA ye

» Eger klûb deynê xwe bide, wê FIFA û TFF qedexeya transferan rabikin an na?

**Amed (Rûdaw) -** Karmendên Amedê, rêvebirên klûbê û çendîn kesayetên Amedî hefta borî bi armanca çareserkirina pirsgirêka Diyarbakirsporê çendîn hevdîtinan kirin. Hate ragihandin ku civîna ku karmend tevlî bûn ernênî derbas bû û damezirandina rêvebiriyeke nû bi biryara FIFAyê ve girêdaye.

Klûba Diyarbakirsporê ev du sal in pêvajoyeke zehmet derbas dike. Klûb ji ber ku bonservîsa çendîn futbolvanan neda û herwiha pereyê Federasyona Futbolê ya Tirkiyeyê (TFF) neda, rastî astengiyên hiqûqî hat. Diyarbakirspor jiber van deynan nikare futbolvanên nû transfer bike û ev yek jî dibe sedem ku di lîgê de performanseke serkeftî nîşan nede. Hefta borî roja yekşemê li Amedê Parlemenê AKPê Cuma İçten bi nûnerên çapemeniyê re hevdîtin çêkir û paşê civînek bi karmendên Amedî re li dar xist. Li gor nûçeya Diyarbakirspor.orgê hinek karmend tevlî civîne nebûne lê diyar kirine ku wê piştgirî bidin hewldanên İçten. Li gor nûçeya malperê di civînê de qedexeya FIFA û ya TFFê hatiye nîqaşkirin û eger FIFA biryara xwe neguherîne wê ti karmend piştgiriya damezirandina rêvebiriyeke nû nekin. Herwiha hate ragihandin eger biryara FIFAyê erênî be wê karmend piştgirî bidin klûbê û wê navê kesekî ji bo serokatiya klûbê bê diyarkirin.




### Helwesta Biçakçi erênî ye

Li gor nûçeya malpera Diyarbakirspor.orgê Parlemenê AKPê yê Amedê Cuma İçten bi rêya telefonê bi Dr. Levent Biçakçiyê şêwirmendê huqûqê yê TFFê re axiviye û Biçakçi helwesteke baş nîşan daye. Biçakçi berê serokatiya TFF kiriye û ji sala 1989ê şûnde jî di Dezgeha Huqûqê ya FIFA de nûnertî kiriye. Biçakçi gotiye eger Diyarbakirspor deynê xwe bide wê qedexeyên transferan bên rakirin. Biçakçi herwiha gotiye ku ew ê vê heftê bi nûnerên FIFAyê yên li Cenevreyê re têkilî deyne û ji bo Diyarbakirsporê bi wan re biaxive.

Eger biryara FIFAyê erênî be wê di demeke nêzîk de rêvebiriyek bê damezirandin û kongre bê li dar xistin. Lê eger biryara FIFAyê qedexeyê berdewam bike, wê karmend tevlî damezirandina rêvebiriyê nebin.

### Amatoran transfer dike

Li aliyê din, Klûba Diyarbakirsporê ji ber qedexeya transferan çav bera futbolvanên amator da. Di vê çarçovê de roja duşema borî ji tîma DSİSpor ya Lîga Amatoran ya 1. futbolvanek ciwan yê 18 salî transferê xwe kir. Li gor yasayên TFFê klûb dema transferên amator bikin, piştî 6 mehan dikarin futbolvan tevlî kadroya xwe ya fermî bikin.

# Jinên kurd li pey şopa Messi ne

» Jiber tîmeke din a jinan li Amedê tune, ew maçên xwe yên amadekariyê bi tîma mêran re dikin.

**Bawer Çem**

Tîma Futbolê ya Jinan a Şaredariya Amedê, bi performansa xwe ya serkeftinê herkesî ji xwe re heyran dihêle. Ji ber ku li Amedê tekane tîma jinan e, amadekariya maçê bi tîma mêran re dikin. Jinên kurd dixwazin bibin Messiyê jin.

Tîma Futbolê ya Jinan a Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê, di Lîga 2. a Tîma Futbola Jinan de dilîzin. Cara ewil e ku li Amedê tîmeke jinan a futbolê tê avakirin. Tîmê di du maçên xwe yên destpêkê de, vê sezonê Elazig Hedefsporê 6-0 û Gaziantep Kentsporê jî 2-1 têk birin û gelek tîmên futbolê bi hebûna xwe hesandin.

Li gor agahiyên ku antrenora tîmê Filiz Atay da, wê 4 sal berê Dibistana Bilind a Pîşeyî ya Perwerdea Spor û Bedenê ya Zanîngeha Dîcleyê qedandiye û di nava yekemîn hakemên jin ên Amedê de cihê xwe girtiye. Lê Atay, ligel hakemtiyê xwest antrenoriyê jî bike. Filiz Atay, di "Kursa Lîsansa B a UEFA"yê de serkeftineke baş bi dest xist û mafê antrenoriyê wergirt. Piştî vê serkeftinê, Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê pêşniyar kir ku Atay di tîma futbolê ya şaredariyê de antrenorî bike.

Atay, demek futbolîzên mêr perwerde kir û antrenoriya wan kir û piştre ji rêveberiya şaredariyê xwest ku tîmeke jinan ava bike û ew antrenoriya vê tîmê bike. Şaredariyê ev daxwaza wê qebûl kir. Atay got: "Li Amedê avakirina tîmeke jinan pir zehmet e. Li Amedê dev ji lîstina futbolê berdin, jin nikarin biçin stadyûmê û maçan temaşe bikin. Lê digel hemû zehmetiyan jî ez mal bi mal, dibistan dibistan, pol bi pol geriyam û min xwe gihand 7 keçên ku eleqeya wan ji futbolê re heye. Me tîma xwe bi 7 keçan ava kir. Piştre me lêgerîna xwe dewam kir."

### 'Malbatên keçikan berdan min'

Gelek malbat bi hinceta ku "futbol ne îşê jinan e" pêşniyara Atay red kirin. Hin malbatan jî Atay ji mala xwe qewitandin û berdan wê. Atay, vê yekê wiha vegot: "Serê ewil psîkolojiya min xira bû. Lê min pes nekir. Ez her roj her dan, her êvar, çûm malbatan, min derdê xwe ji wan re got. Bi vî awayî hejmara lîstikvanên me gihişt 32 kesî. Dê û bavên ku ez ji mala xwe avêtim, niha tên li maçên keçên xwe temaşe dikin. Min 15 meh heftiyê 5 rojan antrenoriya van keçikan kir û ew perwerde kir. Dawiya dawî em gihiştin vê serkeftinê. Pêşiya me vekirî ye. Em ê navê Amedê li her derê bidin naskirin. Jiber tîmeke din a jinan tune em bi tîma mêran re amadekariyên xwe dikin. "


Wêne: Rûdaw

32 keç di tîma jinan de dileyîzin



Wêne: Rûdaw

### Messi, Ronaldo, Arda…

Li gorî agahiyên ku Atay da, di tîma wan de keçên herî serkeftî Zelal, Songul, Nureysa, Siltan Bahar û Guzîde ne. Kaptana tîmê Bahar Aktepe bal kişand ku hevalên wê jê re dibêjin "Messiya Jin". Aktepe, destnîşan kir ku ew li ser şopa Messi diçe û wiha axivî: "Malbata min ji min re gelek zehmetî derxist. Ez gelek caran bi dizî ji mal derdiketim û diçûm futbolê. Bi vî awayî min xwe gelek bi pêş xist. Malbata min piştî demekê neçar ma ku vê rastiya min qebûl bike. Niha piştgirî dide min."

Futbolîza serkeftî Zelal Bataray jî da zanîn ku ew dixwaze li ser şopa Messi, Ronaldo û Arda biçe û wiha berdewam kir: "Ez hemû maçên van kesan temaşe dikim. Li taktîk û teknîka wan dinêrim. Roja den têm sehayê, ez jî heman hereketan dikim. Hewl didim di qata futbola jinan de pir bi ser bikevim. Ez bawer im di pêşerojê de ez ê navê Amedê li her derê bidim bihîstin."

### Ekrem Heydo Kî ye?

Di sala 1973ê de li Rojavayê Kurdistanê li bajarê Serêkaniyê ji dayik bûye. Li Almanyayê perwerda derhêneriya sînemayê di sala 2009ê de li Akademiya Hunerê ya Ruhrê bi dawî kir. Li Amed û Berlînê dijî. Helebçe, fîlmê wî yê metrajdirêj ê pêşîn e.

**Fîlmên Ekrem Heydo:**

*Halabja — Zarokên winda, 2011*

*Déjá vu, kurtefîlm, 2004*

*Radio Hîwa kurtefîlm, 2003*

*Ubi bene ibi patria, kurtefîlm 2001*



Fîlmê Derhêner Ekrem Heydo bi navê "Helepçe-Zarokên Winda" ji xelatan têr nabe!

## Heydo: Li bakur bingeha sînemaya kurdî xurt e

# Li Amedê li akademiya hunerê ders dide

Ekrem Heydo salên 90î ji Rojavayê Kurdistanê hatiye Ewropayê, li zanîngehê perwerda sînemayê dîtiye. Piştî gelek tecrûbeyên sînemayê, sala 2011 fîlmeke belgeyî yê dirêj kişand, beşdarî çend festîvalan bû, xelatên herî serketî wergirt. Îcar vegeriya Bakurê Kurdistanê û bi tecrûbeyên xwe xizmeta sînemaya kurdî dike; li Amedê di Konservatûwara Aram Tîgran de dersa sînemayê dide.

**Rûdaw: Heta niha fîlmê te tevlî çend festîvalan bû û eleqeyek çawa dît?**

**Heydo:** Filmê HALABJA tevlî 8 festîvalên netewî û navnetewî bû, li 4 festîvalan xelat wergirt.

**Rola festîvalan çi ne? Ji bo te kîjan festîval balkêş bû? Festîvalên kurdan û navnetewî?**

Festîval roleke pirr mezin di pênasîna fîlman de dilîze û serkeftina wan, herwiha fersendeke dide fîlmçêkeran ku hevdû nas bikin, di belavkirin û bazara fîlman de rêyekê vedike.

Festîvala navnetewî ya balkêş, ya Dubayî bû bo min, ji ber ku pirr baş hatibû organîze kirin û rengê navnetewî cihê xwe girtibû, ji Hollywood, Bollywood, ji Afrîka û Asya û ji Rojhilata Navîn gelek film û fîlmçêker hatibûn. Di 8 salan de festîvala Dubayî cihê xwe di nav festîvalên navnetewî de çêkiriye, di Rojhilata Navîn de ji fîlman re bûye navnîşanek.

HALABJA di festîvalê de hate nîşandan û xelata taybet a jûriyê wergirt. Di çapemeniya erebî de bi rengekî erênî li ser fîlm gellek tişt hate nivîsandin.

Festîvala netewî bo min li Bakurê Kurdistanê ya Fîlmamed û Festîvala Fîlman a Yilmaz Guney li Batmanê, gelekî bi rêk û pêk hatibû organîze kirin û pirr kes lê beşdarbûn. Bi ya min li bakur bingeheke baş heye bo sînemaya kurdî.

**Bi ya te dem hatiye ku rewşenbîr û hunermendên kurd vegerin welatê xwe, xizmeta çand û hunerê bikin?**

Mirov dikare ji cihê ku lê dimîne xizmeta çand û hunera kurdî bike. Xebata li derveyî welêt pirr girîng e. Têkiliyên bi civakên biyanî re ku em di nav wan de dijîn pirr girîng û alîkar in bo nasandina çand û pirsa kurdî. Lê ya herî girîng ku mirov têkiliyên bi hundirê Kurdistanê re xurt bike. Pêwîst e em projeyên mayînde li Kurdistanê jî pêk bînin.

**Eleqeya beşdaran li Bakurê Kurdistanê çawa ye?**

Dema ez beşdarî festîvala Filmamedê bûm ji min hate pirsîn ka ez dikarim dersên sînemayê li Amedê bidim. Ev pêşniyar pirr bi dilê min bû; li akademiya hunerê bi zimanê kurdî ders dan û bo avakirina sînemaya kurdî bi zimanê kurdî çêdibe. Ya din jî ez bi xwe evîndarê Amedê me û ji ber wê jî dema ev pêşniyar ji min hate kirin û derfet bo wê çêbû, min ew pejirand.

Jimareke baş beşdarî dersên akademiyê dibe û bi heweseke xurt beşdar xwendina xwe berdewam dikin.

**Asta Konservatûwara Aram Tîgran kîjan dereceyê de ye? Şagirtên ku xilas dikin wê bi awayeke fermî dîploma bistînin?**

Konservatûwara Aram Tîgran bi xwe beşa hunerî ya Şaredariya Mezin ya Amedê ye. Xwendekar mecbûr in ku 2 salan xwendina xwe li wir bikin û yên serketî wê bi dîplomayê bi dawî bikin. Di Konservatûwara Aram Tîgran de ne tenê beşa xwendina sînema heye, herwiha beşa xwendina muzîkê, şêwekarî, dans, wêjaya kurdî û şano jî hene.

**Gelo projeya te ya bê çi ye?**

Ez ê projeya bê li bakur pêk bînim; çîroka wê sînoran derbas bike.

*Hevpeyvîn: Ciwan Tengezar*



### Gelo Alî kurê kê ye?

Du roj piştî barana bombeyên kîmyevî, leşkerên Îranî tên cihê bûyerê. Gellek zarok û mezin jiyana xwe ji dest dane, lê hin kes jî birîndar in. Ali jî yek ji wan e. Hê zarok e. Gellek endamên malbata xwe di vê qirkirinê de winda dike. Malbateke Îranî xwedî lê derdikeve û wî mezin dike. Bi xêra "Komela Zarokên Windayî yên Helepçe"yê û Hikûmeta Herêma Kurdistanê, guman li Ali tê kirin ku ew zarokê Helepçeyî ye. Piştî testa DNAyê derdikeve holê ku Ali zarokê Helepçeyê ye û niha li Zanîngehê xwendekar e.

Alî diçe serdana goristana Helebçeyê û li ber kevirê gorekê radiweste ku navekî rêşkirî li ser wê heye; ew gora wî ye!

Piştî 21 salan Alî ji Îranê vedigere Helebçe, ji bo ku li malbata xwe bigere. Pênc malbat hêvî dikin ku Alî zarokê wan be. Herwiha malbata mamoste û hunermend Fexredîn jî, yê ku di êrîşên bombeyên kîmyawî de pênc zarokên xwe wenda kiriye. Gelo Alî zarokê wan ê wendayî ye?

### Tevlî van festîvalan bû:

- Festîvala 35th São Paulo International Film Festival, li Brazîlya
- FILMAMED, Festîvala fîlmên dokument ya Amed, Bakurê Kurdistanê
- 8. Dubai International Film Festival Îmaratê (8. festîvala fîlmên navneteweyî ya Dubayî)
- 22. Festîvala Fîlmên Navneteweyî ya Emden li Almanya
- 5. Festivala Fîlmên Belgeyî ya Îranê
- Festivala Fîlmên Kurdî ya Londonê 2011
- Festivala Fîlmên Yilmaz Guney li Batman – Elihê li Bakurê Kurdistanê
- Duyemîn Festîvala Fîlmên Belgeyî ya Helepçe li Başûrê Kurdistanê

# Omer Gundî ligel keçên Dihokê stranan nabêje

## "Îro ew dem nemaye tu stranekê ligel hespekî yan bizinekê bibêjî"

*CDya nû ya Omer Gundî ji 11 stranan pêk tê, dengvedaneke mezin çêkir, ku tê de straneke soranî bi navê 'Meryemê çende ciwan î' heye. Di vê CDyê de strana `Dîno û dînê` ligel stanbêja ji Cezîrê Rûken gotiye, tê klîpkirin. Bi dîtina Omer Gundî bêtir ew strana 'Navê te çi ye?' deng bide.*

**Rûdaw: Tu ne bi niyet î ku ligel hunermendên keç ên Dihokê stranan bêjî?**

**Omer Gundî:** Na, jiber ku ti hunermendên me yên keç li Dihokê nînin, yên ku hene jî ji tirs û rexne û şermê nekarîne xwe pêş bixin. Rêza keçên stranbêj digirim, gelek şerm e hunermendê mêr xwediyê simbêlên boq strana `Ez keç im keça Kurda me kulîlka serê lawa me` bibêje wesifa keçê bide, her çiqasî ez jî neçar mame stranên wiha bibêjim.

**Albuma te ya nû du stranên kevin tê de hene, çima?**

Stranên min yên kevin (min nehêle, ey dilê min nazika min) û gelek stranên min, ji min re bûne dîrok, di wê demê de studyoyên baş nebûn, mixabin têne windakirin, ji ber wê yekê dixwazim di her kasêteka xwe ya nû de du stranên kevin nû bikim.

**Klîba te ya nû (Navê te çi ye) gelekî deng veda, her çiqasî ji aliyê hinek mirovên dîndar rexne li ser dîmenên klîbê hebûn jî, nêrîna te li hember van rexneyan çi ye?**

Du cûreyên rexneyê hene, yek jê avaker e ez asayî dibînim û sûdê jê werdigirim, lê hinek kes hene rexneyên wan ne avaker in, tinaziyan bi kar dikin, ti bandorê li ser kesayetiya Omer Gundî nakin. Gelek caran derbarê dîmenên klîbê rexneyên tund têne ji min re, lê ez rexneyên wan kesan bi qirûşekî nakrim.

**Hinek kes dibêjin ew keça di klîba Omer Gundî de bê serdeling û rût e, ev jî ji çanda eşîretî dûr e û em nikarin li klîba Omer binêrin?**

Şêweya pirsiyarkirina xelkê me kirêt e, xelkê me bes li tiştên bê nirx digerin, bi dîtina min ti rûtî tê de nîne. Dîmenên klîba min asayî ne û ti rûtbûn di wan de tune ye, ew kesên wisa dibêjin çavên wan kiz in bila serdana doktorên çavan bikin yan berçavkan deynin, bila baş binêrin ka ew keça di klîbê de bi serdeling e yan bêdeling e.

**Ger kesekî dîndar ji dengê te hez bike û nikaribe berê xwe bide klîbên te ji ber rûtbûna keçan, gelo tu nafikirî stranekê ji wan kesên dîndar re bibêjî?**

Ti carî nefikirîme straneke olî bêjim, ez nabêjim jî, daku stranên min ne tevlîhev bin, naxwazim hemû rengan bêjim. Kanalên me yên ezmanî hene, hemû dinya me dibîne, îro ew dem nemaye tu stranekê ligel hespekî yan bizinekê bibêjî, îro xelkê me gellekî li kanalên tirkî û erebî dinêrin, ekranên wan di malên me hemûyan de hene, gelek tiştên xirabtir ji klîpan diweşînin, çima bes rexneyan li klîban digirin, klîba min û gelek klîbên kurdî dwê berê xelkên me ji kanalên biyanî biguherin.


Wêne: Rûdaw

**Tu çawa berê xwe didî stranbêjên ku stranên olî dibêjin?**

Ti pêwendiya min bi karê wan tune, her hunermendek azad e, tenê berpirsê xwe me, ez stranên olî nabêjim, heke min gotin divê dev ji stranên evîndarî û şoreşgêrî berdim.

**Berî çend salan Omer Gundî nedikarî bê Kurdistanê, çima?**

Bawer bike xelkê me gelek tiştan dibêjin ku ne rast in. Ez hertim dikaribûm bêm Kurdistanê, lê demekê bê pasеport bûm, di sala 1996ê de hatim Dihokê û min zarokên xwe birin.

**Hesta Omer Gundî ne hejiyaye ku stranekê bo şoreşa Kurdên Rojavayê Kurdistanê bibêje?**

Belê ez ligel keça helbestvan Cegerxwîn axivîme, min daxwaz jê kir eger helbesteke ciwan hebe li ser şoreşa Kurdên Sûriyê weke hevkariyekê bo wan ez ê bêjim, da ku Kurdên Rojavayê Kurdistanê hest pê bikin Kurdên Başûrê Kurdistanê ji wan agahdar in.

**Demek e tu ji hunerê dûrketî, tu karekî din dikî?**

Demekê ez ji hunerê dûr ketim û li Dihokê mijûlî avakirina saloneke konferans û şahiyan bûm. Ew avahiya vêga çêdikim cihê 600 kesan tê de heye, xwaringeh û motelekê lixwe digire.

**Rojek wê bê ku tu dev ji hunerê berdî?**

Na, eger ez dîn bim jî wê her berdewam bim, yan bimirim û careke din vegerim vê dinyayê wê her berdewam bim li ser hunerê.

**Gelo dilê te tune bi carekê vegerî Kurdistanê?**

Belê, lê ne niha, zarokên min li xwendingehên almanî dixwînin, eger projeya min xilas bû ez ê bêtir li Kurdistanê bim.

**Mezintirîn karê te yên hunerî yê kîjan salê bû?**

Mezintirîn karê min kaseta min ya şoreşvanî ya sala 1991ê bû, wê kasetê serkeftineke mezin pêk anî, heya vêga bi giştî min 8 kaset tomar kirine.

**Pêwendiya te ligel sendîkaya hunermendan çawa ye?**

Ez endam im di sendîkaya hunermendan de û pêwendiyên min ligel baş in.

**Omer Gundî ji wênegirtina klîbên xwe ne poşman e?**

Na karên xwe bi baweriyeke mezin dikim, bêguman hinek kêmasî jî hene. Mînak ger hunermendek tabloyekê çêke piştî xilas dibe dibêje xwezî min rengekî din zêde yan kêm bikira, dawiya hunerê qet tune.

***Hevpeyvîn: Ebdulla Nihêlî***

## Zagros Cebar:

# Şano bi strangotinê naguherînim



**Hollanda (Rûdaw) –** Şanoger Zagros Cebar bi niyet e bibe stranbêj, lê got, "Ez şano û karê akteriyê bi stranan naguherînim."

Zagros Cebar ku li Hollanda dijî, ji sala 2009ê ve dest bi karê akterî û şanoyê kiriye û vêga şehrezabûna wê di warê şano û akteriyê de heye. Derbarê ka ew ji ber çi venagere Kurdistanê ji Rûdawê re ragihand: "Pir dixwazim vegerim Kurdistanê bo karê şanoyê, lê dijwar e bo min, jiber li Hollanda kar dikim, lewma nikarim bi hêsanî dest ji kar berdim, divê demeke diyarkirî deynim bo vegera li Kurdistanê."

Zagros ku niha bi amadekirina albûmeke stranan ve mijûl e, derbarê hunera strangotinê dibêje: "Hêvîdar im piştî ku bûm stranbêj zêdetir xizmeta hunera kurdî bikim, ev jî wê bêtir di siberojê de bê xuyakirin."

Zagros derbarê karê akterî û stranbêjiyê de jî got: "Ez şano û akteriyê bi stranan naguherînim, her çiqasî herdu jî hunerên pîroz in, lê her warek hesteke xwe ya taybet heye. Di aliyê strangotinê de min hergav hest kiriye talent û şiyaneke min heye ku dikarim xizmeta hunera netewa xwe bikim, lewma min biryar daye stranan bêjim, spasiya hunermend Îmad Mihemed dikim ku di vî alî de gellek da min."

# Hewlêr berbi kû?


Wêne: Rûdaw

Selam Sadî

Bajarê Hewlêrê di van 10 salên dawî de, guhertineke mezin li xwe girt ku her kes şahidiya wê dikin. Lê ti pêşketinek tune ku bi xwe re komeke pirsgirêkan jî neyîne rojevê. Yek ji pirsên ku di vê çarçovê de derdikevin pêş, dahatûyê bajarê Hewlêrê ye û civakî ku di van salên dawî de tê de pêkhatiye

Ligel hemû pêşketinan pirsgirêk nû derdikevin pêş. Jiyana sade û basît, têkiliyên germ û dilsafên civakî, bo tevger, bizava peydakirina dirab, komkirina saman, bilindbûna rêjeya tawanê û diyarbûna cudahiya tebeqeyan û gelek diyardeyên din rê xweş dike.

### Civaka kurd xwe amade kiriye

Hizirmend û civaknasê naskiriyê Îraqê, Hesen Elewî di vê baweriyê de ye ku civaka kurd ev pêşketin li xwe girtiye û wisa dixuye ku vê civakê çaverêyî vê qunaxê kiribe û xwe jê re amade kiribe. Lê hoşdarî jî dide ku "pêşketina bi şêweyê teqînê hertim di dahatûyê de pirsgirêk û tevlihevîyên gelêrî berçav dike, ji ber ku cudahiya navbera mirovan berçavtir dike û pirsgirêkên civakî derdikevin holê."

Elewî ku parlamenterekî Îraqê ye û çendîn sal in malbata xwe aniye Hewlêrê, dibêje "em li gundê Îtalî rûniştine ku kirêya mehane ya xanî 4 hezar dolar in, ligel rêjeya tevahiya mûçeyê fermanberan li Hewlêrê ku 1000 dolar in, tu yê bibînî ku kirêya vî xanî çar caran qasî mûçeyê fermanberekî ye. Ev bandoreke xirab dike ser yekîtiya civakî."

### Fêlbaziyên bazirganiyê derketine

Hesen Elewî dibêje ku xelk li vî bajarî êdî hîn dibin tiştan navêjin ser caddeyan. "Ev pêşketin li bajarên Îraqê tune, erwiha wisa dixuye ku bi vê şêweyê roj bi roj bêtir bikevin bin senga şirketên tirk." Mîna Elewî dibêje ji ber ku li Kurdistanê kêm pispor hene pisporên biyanî tînin û bi taybetî yên Tirk: "Fêlbaziyên pîşesazî û avakirinê bi sedema fakterên lezkirina di pêşketinê de peydabûne. Mirov dibîne ku avahiyên tên avakirin ne zêde qayim in. Lawê min li gokê xist û hinekî mabû dîwar kon bibe û gok bê hundir. Bi pîvan û kalîtê tê lîstin û fêlbaziyên bazirganî yên mezin peydabûne. Ev jî nakok e ligel navdariya Kurdan ku bi paqijî hatine naskirin."

### Şêweyê jiyanê û milmilanêya adetan

Hewlêr bi saya pêşketin û tevgera aborî ji bajarê ku tenê cihê mayîna Hewlêriyan bû, dibe bajareke pirreng. Elewî di vî warî cudahiyê dixe navbera bajarekî xwedî rewşeke rûniştî ku rêya xwe girtiye û bajarekî ku ji nûve di rûyê pêşketinê de vebûye: "Niha bajarekî weke London sê milyon kes tê de hene ku ji derve hatine. Lê eger 10 milyon biyanî jî biçin London wê her bimîne London û yên nû diçin wê bibin Londonî. Hêz û îmkana şaristaniya vî bajarî dikare hatina xelkên biyanî bimêje xwe. Xelk ji Afrîka hatine û bûne îngilîz, lê ev îmkana Hewlêrê tune, ew berê bajarekî biçûk bû û nikare biyanî û şaristaniya biyanîyan li xwe bigre. Loma nikare wan bîne ser şêweyê xwe, lê berevajî ew biyanî wê adetên xwe bînin nava vî bajarî."

**Parêzgarê Hewlêr:**
**Em siyaseta li Dubai hatî meşandin dişopînin**

**Hesen Elewî:**
**Kirêya xanî 4 hezar, mûçeyê fermanbar hezar dolar in**

Sengafore tevî ku weke welat û bajarekî pêşketiyê dinyayê tê temaşekirin, lê Elewî derbarê dubarekirina ezmûna Sengafore hoşdariyê dide û dibêje "Sengaforiyan piştî 30 salan dîtin ku Çînî bûne pîşekarên sereke weke çawa li vir jî mimkûne Tirk heman tiştî bikin, wê demê ew ê bibin xwediyên welat û dirav û nikarin bi ti awayî dest jê berdin. Çînî li Sengaforê bi şêweyekê bûn desthilatdar ku siyasetê didin meşandin, ji ber ku ew bûne bingeha pîşe, teknîk û dirav."

Hesen Elewî daxwazê ji desthilatdarên Herêma Kurdistanê dike ku ezmûna Sengaforê bixwînin, ji ber ku ezmûna wan nêzîkî ya Herêma Kurdistanê ye. Sengafore weke çaremîn navenda darayî yê cîhanê tê zanîn û hejmara rûniştvanên wê pênc milyon kes in.

### Parêzgar geşbîn e

Parêzgarê Hewlêr Newzad Hadî behsa vê guhertina mezin dike ku di 10 salên borî de pêkhatiye: "Master plana 25 salî ku dihat çaverê kirin Hewlêr piştî 25 salan ji nûve bighîje çemê Zêyê Mezin û bilindahiyên Tarîn. Em dibînin ku gelekî zûtir ji plana xwe pêşketiye û ji niha ve Hewlêr gihaye Bineslawe, Kesnezan û Daretû. Hewlêr bûye navendekî xurtê bazirganî û aborî. Loma pêwîstî bi xizmetkariyên bêtir û budceyeke mezintir heye. Berî çend salan dihat texmîn kirin ku 300 MG elektrîk têrî Hewlêrê bike, lê niha pêwîstiya Hewlêrê bi bêtirî 1200 MG heye. Dema me sêyemîn projeya avê destpêkir ku di saetekî 10 hezar metroyên sêcarî ji çemê Zêyê Mezin dehif dide, me wisa danî bû ku heta çend salên din pêwîstiya me bi projeyekê din ê avê nabe, lê em neçar in di 2012yê de çaremîn projeya avê destpê bikin ku 20 hezar metroyên sêcarî bo Kesnezan dehif bide. Ev hemû nîşanên vê yekê ne ku Hewlêr zû mezin dibe."

Parêzgarê Hewlêr zêdebarî amaje da wî ku her bajarekî nasname û taybetmendiya xwe heye: “Ew ezmûna Dubai û siyaseta ku li wir hat meşandin dişopînin.”

### “Ezmûna Dubai ezmûneke şikestî ye”

Lê Profesor Dr. Alan Dîlanî ku xwediyê şîrketeke şêwirmendiyê ye û li Swêd dimîne. Bi tundî rexneyê li vê siyasetê digire û ezmûna Dubai jî weke ezmûneke şikestî bi nav dike.

Alan Dîlanî xelkê Rojhilatê Kurdistanê ye û pisporê warê parastina tendirustiye ye. Ew demekê mijûlê danûstanan bû ligel desthilatdarên Dubai da ku karê şêwirmendiyê jê re bike, lê ew li dawiyê negihan ti encamekê. "Ez şêwirmendê Wezîrê Tendirustiya Başûrê Afrîka me. Em li wir derbarê çawaniya parastina tendirustiyê dixebitin, ne çawaniya çareserkirina nexweşiyan. Mixabin li Kurdistanê wezareta nexweşiyan heye, lê ne wezareta tendirustî. Aqilê xelkê Kurdistanê ji aqilê navçeya Rojhilata Navîn ne cuda ye. Loma Dubai weke mînakeke serketî dibînin."

Dîlanî ku çendîn caran serdana Dubai kiriye dibêje "ev tawer, avahî û tiştên seyr ku li Dubai hatine avakirin, ji aliyê Rojavayiyan hatine avakirin. Me xwest tiştên wan avakirine helsengînin û me dît ku ew hemû şaş in. Bo mînak ji aliyê ewlehiyê eger agir berbibe apartmanekê wê demê avahiyên li kêlekê jî dişewitin. Ango ti helsengandin nebû bo wan karên hatine encam dayîn, loma Dubai rastî şikestineke mezin bû."

Dîlanî diyar dike eger em bixwazin Kurdistan pêşbikeve, Dubai ne mînakeke serketî ye û Kurdistan divê wan welatan bişopîne ku di warê tendirustî de pêşketîne. “Mînaka serketî ku Kurdistan bişopîne welatên Ewrûpayê ne.”

### Tirkiye bihêztirîn welatê cîran e

Lê Parêzgarê Hewlêr van boçûnan retdike û dibêje "li vê navçeyê ezmûna herî serketî ezmûna Dubaî ye." Newzad Hadî diyar dike ku pîvana serketina sîstema ku li Hewlêrê tê meşandin, buhayê xanî û erdê ye ku bi şêweyekî berdewam bilind dibe. Hadî bi hêzbûna aborê Tirkiyê û beşdariya şîrketên wê ya fereh di pêşxistina jêrxana aboriya Kurdistanê de weke metirsî nabîne: "Tirkiye bihêztirîn welatê cîranê me ye û niha hevrikiya welatên Ewrûpa dike. Bêguman sûda wê bo me jî heye. Tirkiye eger welatekî paşketî bûya Kurdistan wisa pêşnediket. Di têkiliyên aborî de hertim qezenc du alî ye û di vê têkiliyê de em jî qezenc dikin."

## Murat Karayilan bangî AKPê dike:

# Madem pirraniya Kurdan alîgirê we ne, kerem bikin, em referandûmê çêkin!

**Serokê Konseya Rêvebir a KCKê Murat Karayilan di hevpeyvînek dirêj de pêvojiya dawî li Bakurê Kurdistan û Tirkiyeyê ji Rûdawê re nirxandin. Em li vir beşekî ji vê hevpeyvînê diweşînin.**


Wêne: Rûdaw

**Rûdaw: Hemû parçeyên Kurdistanê hevxemiya xwe ji bo bûyerên li Bakur ên di derbarê komkujiya 35 karwaniyên Bakur de nîşan dan. Lê li Herêma Kurdistanê ji aliyê Serokê Herêma Kurdistanê ve peyam û şande ji bo taziyê hebû. Herwiha ji aliyê hêzên din ve jî. Hûn hest dikin ku hevxemî di asta pêwîst de bû?**

**Murat Karayilan:** Bêguman ev komkujî bi plan, bi biryar û di hundirê koordînasyonekê de pêk hatiye. Lê helwesta ku gelê Kurd li hemberî vê raber kirî, nerazîbûna ku li hemû deran pêşxistî bi rastî pirr girîng e. Li her çar parçeyên Kurdistanê û heta Kurdên derveyî welat tevahiya Kurdan ev komkujiya li Roboskî şermezar kirin, hevxemgîniya xwe raber kirin û xwestin ji kesên ku ev kiryar kirî, ji hêzên dagirkeriyê, hesab bê pirsîn. Li şehîdên xwe xwedî derketin. Ev tiştek girîng e.

Di serî de siyaseta Herêma Kurdistana Başûr jî helwesta xwe raber kir. Bi taybetî Serokê Herêma Kurdistanê hem roja merasîma şehîdan şandeke xwe şand, li wir amade bûn, hem jî duh ji bo taziyê. Ki bo sersaxiyê cardin şandek çû herêmê cihê taziyê, li wir amade bû, axaftin kir. Ev helwestek nazik e, erênî ye. Ez ji ber vê helwestê ji bo rêzdar Serokê Herêma Kurdistanê spas dikim. Bi giştî siyaseta kurd di pêşxistina helwesta li dijî komkujiyê de gihîşt astekê.

**Erdogan ji bo bûyera hunermend Rojînê daxwaza lêborînê kir, lê ji bo kuştina 35 welatiyan ti daxwazeke lêborînê nekir. Hûn vê yekê çawa şîrove dikin?**

Niha li dijî Rojînê midûrê TRTê dijûnên giran kir. Ev midûr kesekî nêzî Erdogan e û wî erkdar kiriye. Piştî ku ev dijûn di çapemeniyê de belav bûn, Erdogan ji bo wî tiştek negot, ew hîna li cihê xwe ye. Lê çend deqeyan telefon vekiriye, lêborîn xwestiye. Çiqas samîmî ye? Eger bi rastî samîmî ye, bila midûr ji erk bigirta. Lê ew di wir de difikirê ku belkî Rojîn li hemberî Têkoşîna Azadiyê li aliyê xwe bigirê, belkî di demên pêş de bikar bînê. Ji bo wê ev hewldan pêşxist. Yanî ew niha dibêjê, midûr wiha êrîş bir ser, ewê biçe cem PKKê. Ji bo wê hewldana lêborînê pêşxistiye. Ez bawerim Rojîn bi xwe jî vê fêm dikê. Wekî jineke kurd û hunermend divê saziyên kurdî jî lê xwedî derbikevin.

Eger 35 kesên Tirk li Bûrsayê an jî Îzmîrê bihatine kuştin, wê hemû dewlet li wir amade bibûya. Wê herî hindik 3 rojan şîn îlan bikiran. Lê ji ber Kurd in tiştek nekirin. Cudakariyeke eşkere heye. Çima ji Başûrê Kurdistanê şandeyekî Serokê Herêma Kurdistanê sînor derbas dike, diçe li torena cenazeyan amade dibe, hemû BDPyî ji Stenbol, Enqerê tên amade dibin, lê yek nûnerekî hikûmeta tirk nehat? Waliyê herêmê jî nehat. Piştî 3 rojan qeymeqamê Qilabanê hat, ew jî malbatên şehîdan êrîşî ser kirin, bi zor û zehmet BDPyiyan ew xilas kirin. Eşkereye ku ne li xema wan xwe li erdê nahêlin. Emê hesab bê pirsîn, heta kêfxweşî jî pêşxistin. Ji bo vê yekê nivîskar Ahmet Altan got, "Ez li hemberî vê yekê şermeke mezin dijîm."

**We ragihand ku hûnê tola wan 35 karwaniyan hilînin. Bi nêrîna we ne baştir e ku heyfhilanîn ne bi çek û êrîşan be, bi siyasetê be. Ji ber niha Dewleta Tirk li ber rexneya ne. Piştî êrîşek we ya tolhildanê wê gotina Tirkiyeyê û helwesta wan bihêz nebe?**

Min wiha gotibû: "Bila kes meraq nekê, em xwîna van însanên xwe li erdê nahêlin. Emê hesabê wan bipirsin." Min wiha gotibû. Ev hemûyê dixe hundirê xwe. Mesela niha gelê me li her derê xwepêşandanan pêşdixe, hesab dipirse. Emê bi siyasî hesab bipirsin, bi dîplomatîk hesab bipirsin, bi huqûqî wê hesab bê pirsîn. Pêwîst be emê bi leşkerî jî hesab bipirsin. Yanî em bi her zimanî têkoşînekê dimeşînin û emê bi her şêwazî jî li van 35 ciwanên xwe xwedî derbikevin, xwîna wan li erdê nehêlin û emê hesabê ji dagirkeriya Tirkiyeyê bipirsin. Min di vê çarçoveyê de anî ziman. Ez bawer dikim belkî şaş hatibe fêmkirin.

> Ji bo guftûgoyên di navbera me û Dewleta Tirkiyeyê de, saziyeke navnetewî li Ewropayê ket navbera me.

**Hûn gotinên Cîgirê Serokwezîrê Tirkiyeyê Bulent Arinç ên dibêje "Emê di destûrê de mafê Kurdan bidin, li ser nasname û zimanê kurdî mikûr bên" çawa dinirxînin?**

Di gotinên Cîgirê Serokwezîrê Tirkiyeyê Bûlent Arinç de samîmiyet nîne. Em wan gotinên wî di çarçoveya şerê taybet ê li dijî me dimeşîne de digirin dest. Niha Dewleta Tirkiyeyê li hemberî Têkoşîna Azadiya Kurd şerekî giştî dimeşîne. Gotinên wiha jî dem bi dem tavêjin holê ji bo ku bi hinek derdoran re hêviyê çêkin, sistiyê çêkin û cudakariyê çêkin. Yanî axaftinên bi armanc in, ne samîmî ne. Eger Bûlent Arinç samîmî ye, bila tecrîta li ser Îmraliyê rakê, bila siyasetmedarên Kurd - 5 hezar kes bê sûc, bê sebeb girtine, avêtine zîndanê - berdê. Bila operasyonên kuştinan bisekinînê. Bila gav bavêjê; çima diçe di meclîsê de diaxive?

Hemû kesên pêşeng girtine, kirine zîndanê û nahêle bi zimanê zikmakî xwe biparêzin, di dadgehên xwe de kurdî qedexe dike; derdikeve dibêje, "Emê hemû mafên Kurdan bidin." Emê çawa pê bawer bikin? Ew ji bo ku ser bi komkujiyên ku dikin bigirin û xwe veşêrin, heqîqeta xwe derçav bikin, axaftinên wiha dikin. Çi qîmeta xwe ji bo me nîne.

Li ser pakêta duyemîn a 'Pêşîvekirina Demokratîk' a ku Beşîr Atalay behs dike, ti axaftinek li gel we û aliyê kurdî bi giştî hatiye kirin, hûn ji vê yekê çi hêvî dikin?

**Di navbera me û Dewleta Tirkiyeyê de çi axaftin nîne. Li gorî ez dizanim di navbera Dewleta Tirk û çi aliyê kurd de jî axaftin nîne. Berî her tiştî lazime mirov vê bipirse: 'Pêşîvekirina Demokratîk a Yekemîn' çi bû ku dikê yê duyemîn pêşbixê?**

Ev Beşîr Atalay du salan pêde ji tevahiya civakê re derew kirin. Got "Em Pêşîvekirina Demokratîk pêşdixin." Dûv re derket holê ku 'Pêşîvekirina Demokratîk' bi esasî tesfiyekirina Tevgera Azadiyê ye. Niha jî hinek tengav bûne û dibêjin, "Di pêş de emê Pêşîvekirina Demokratîk a Duyemîn jî bixin rojevê." Lê belê hema li kêleka wê Beşîr Atalay çi dibêjê? Dibêjê, "Em li ser esasê stratejiya entegreya yek alî dixebitin." Yanî ew bi xwe eşkere dike. Ew naxwazin Kurdan wekî muxatab bigirin. Ew dixwazin Kurdan bi xwe re bikin yek. Entegrasyon ew e. Dibêjin, "Birayên me ne. Kurd hene, dikarin klamên xwe bibêjin, dikarin bi zimanê xwe biaxivin." Tiştên wisa dibêjin, lê belê Kurdan wekî netewe qebûl nakin. Pirr zimanekî polîtîk, sergirtî û durû dimeşînin.

**Çûyîna du grûbên aştiyê yên ji Qendîl û Mexmûrê, di çarçoveya guftûgoyên li Oslo yên navbera Tirkiye û we de bûn?**

Guftûgoyên li Oslo ji bo çareseriyeke mayînde guftûgoyên hîn ciddî bûn. Niha ne rast e û ne di cih de ye ku mirov çi guftûgoyên hatine kirin eşkere bike. Lê belê ji bo çareseriyê hem li Îmralî, hem jî li Oslo bi rastî nîqaşek hebû.

Mijara çûyîna Grûbên Aştiyê wekî tiştekî di navberê de bû. Bîzat pêşniyara Erdogan bi xwe bû. Hem ji bo Serokê me şanda xwe şandibû Îmralî, hem jî heman peyam ji bo Serokê Herêma Kurdistanê Birêz Mesûd Barzanî jî şandibû. Di van her du cihan de jî peyam gihîşte me. Me wê çaxê di nava xwe de jî guftûgo kir û me biryar da ku em du grûban bişînin. Li ser wî esasî ew grûb ketin rojevê. Yanî li ser daxwaziya Erdogan ket rojevê. Wê demê jî pêvajo ber xitimandinê bû. Ji bo pêşî li pêvajoya çareseriyê vebê me guncaw dît. Lê Erdogan jî ji bo destê xwe hîn xurtir bike ev taleb kir.

**Rola Herêma Kurdistanê di sazkirin û rêvebirina wan guftûgoyan de çibû? Wekî hatiye belavkirin, hinek guftûgo li Selahedîn jî hatin kirin?**

Ji bo guftûgoyên di navbera me û Dewleta Tirkiyeyê de, saziyeke navnetewî li Ewropayê ket navbera me û guftûgo li Ewropayê ji aliyê hevalên me yên Ewropa de hat pêşxistin. Heman demê li Îmraliyê guftûgo hebûn. Du salên ewil ne yekser bûn, bi rêya navbeynkaran dimeşiya. Lê 3 salan dem bi dem wekî heyet ji her aliyekî 4-5 kes bi şêwazekî fermî li hev rûdiniştin, nîqaş dikirin û her di rûniştinê de hinek encamên ku digihîştinê hebûn. Lê mixabin aliyê Tirkiyeyê ti caran ev encamên di civînan de ketibûn bin biryarê pêk neanî. Yanî li aliyekî em bi hev re rûdiniştin, li aliyekî jî siyasetmedarên kurd digirtin. Li aliyekî em bi hev re rûdiniştin, li aliyê din dem bi dem operasyonên leşkerî dikirin. Me digot, ev çima dibe? Digotin, "wileh ev cenahekî cuda ye, em nikarin kontrolê li ser çêkin, em hewl didin bisekinînin." Yanî her wiha digotin; lê dûv re jî me fêmkir ku ne wiha ye. Hemû gişt yek dest in. Ew guftûgo li Oslo çêbûn; ti caran li Selahadîn çênebû. Ew nûçeya bi vî awayî derketî ne rast e.

**Niha ti guftûgoyek heye an jî ti hewldanek ji bo destpêkirina guftûgoyên di navbera we û Tirkiyeyê de dîsa hene?**

Na, niha di navbera me de çi guftûgoyên nû tune ne. Wisa xuya dike ku zû bi zû jî çênabe. Car caran hinek rojnamevanên Tirkiyeyê şîrove dikin û dibêjin gumane ku guftûgo hebe. Ew bi armanc van tiştan dixin rojevê. Ji bo di nav refên me de teredûtê, dudiliyê çêkin tiştên wiha dibêjin. Di heqîqetê de tiştekî wiha tune ye. Ew heya şert û mercên me qebûl nekin em wekî ew hêvî dikin gava paşde navêjin. Ew jî vê

dizanin. Ji bo wê niha biryar girtine; dixwazin berê darbe li me bixin, me lewaz bikin ku heta em şert û mercên wan qebûl bikin, wiha pêvajoyeke nû pêşbixin. Ango heta em li ser lingan bin, bihêz bin ew niha tiştekî wiha naxin rojevê.

**Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di hevpeyvîneke li gel Dengê Amerîka (VOA) de got, niha ligel PKKê hewldanek me ya ji bo dirûstkirina statuyek bê şiddet û çek heye. Ev hewldan çi ne?**

Ya rastî vê pirsê divê hûn ne ji min, ji kek Mesûd bipirsin. Lê ez dikarim di derheqê vê mijarê de hinek tiştên cuda bînim ziman. Em wekî aliyê kurd, çi Serokê Herêma Kurdistanê kek Mesûd dibe, çi em wekî aliyê PKKê dibin, em dixwazin pêvajoyeke bê şîddet û bi aştî pêşbixin. Em dixwazin Pirsgirêka Kurd bi rê û rêbazên aştiyane çareser bikin. Em ji vê re vekirîne. Lê em ti caran li hemberî dagirkeriyê, ji teslîmbûnê re, ji gav paşde avêtinê re qet û qet ne vekirîne.

Di dema ziyareta kek Mesûd de ez bawer im Erdogan ji kek Mesûd taleb kiribû ku pêvajoyeke nû ya wekî agirbestê pêşbixe, ji bo vê hewl bide. Ez baş nizanim, lê şîroveya min wiha ye. Belê, kek Mesûd ku ji Tirkiyeyê vegeriya, bi dest xwe re êrîşên hewayî destpê kirin, operasyonên bejayî destpê kirin û tiştê din ê herî girîng, li ser siyasetmedarên kurd operasyonên di bin navê KCKê de hîn geş kirin û herî dawî jî li ser parêzerên Serok Apo operasyonek pêşxistin ku di ti dera cîhanê de di yek operasyonê de 35 parêzer nayin girtin û nayin zîndanîkirin. Lê Dewleta Tirkiyeyê ev kir.

**Nivîskarê Rojnameya Radîkal a Tirkiyeyê Avnî Ozgurel di gotareke xwe de dibêje, "PKK wê berî havîna 2012'an çekan dane." Hûn van gotinan çawan dinirxînin?**

Rast e, ne tenê Avnî Ozgurel, Taha Akyol û hinek nivîskarên din jî di şîroveyên xwe de dibêjin "PKK wê heya havîna 2012ê çekan daynê." Van şîroveyan li ser kîjan hesaban dikin ez baş nizanim. Lê ez difikirim ku ew planên AKPê dizanin û AKP dihesibîne ku wê vê zivistanê êrîşan li ser me geş bike, biharê jî berdewam bike û me bi piranî tesfiye bikê, bi vî awayî bigihe encamê û wiha wê pêvajoyeke nû pêşbixe. Belkî li ser vî hesabî şîroveyên wiha dikin. Ji ber ku AKP dibêje "Emê pişta PKKê bişkînin, wê çaxê PKK wê mecbûr bimîne daxwaziyên me qebûl bike û wê dev ji çekan jî berdin." Ango dixuye ku planeke AKPê ya bi vî şêwazî heye, ev kes jî dizanin. Gumane li ser wê van şîroveyan dikin.

**Leyla Zana di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de got, "pêwîste referandûm bê kirin an jî çareseriyeke nêzî federaliyê hebe." Hemû partiyên Tirkiyeyê, bi taybet jî CHP û MHPê, qiyamet rakirin. We piştgirî dayê. Hûn niha ber bi wê yekê ve diçin ku li Bakurê Kurdistanê daxwaza federalî an jî referandûmê bikin?**

Bi esasî niha em di navbera xweseriya demokratîk û federaliyê de ciyawaziyeke pirr mezin nabînin. Rast e, sîstemek cuda ye, lê em di aliyê azadbûna civakê de ciyawaziyeke mezin nabînin. Mesele ew e ku Dewleta Tirkiyeyê fêm bike ku êdî netewe-dewlet û di yek navendê de bi şêwazekî navendî rêvebirina welatan dema xwe tê bihurandin. Êdî li ser rûyê erdê sîstemên rêveberiyên herêmî pêşdikevin. Niha Tirkiye vê qebûl nakê. Lê êdî ev di cîhanê de pêşdikeve û em Kurd jî vê wekî perspektîfa çareseriya Pirsgirêka Kurd dibînin. Heman demê demokratîkbûna herêmê jî di vir re derbas dibe; demokratîkbûna Tirkiyeyê jî encex wiha bibe.

Ji bo wê projeya Xweseriya Demokratîk a me pêşniyar kirî, em ji bo tevahî Tirkiyeyê pêşniyar dikin. Di vê çarçoveyê de pirsgirêka Kurd jî wê çareser bibe. Tirkiye vê qebûl nakê. Dema vê qebûl nakê, tiştekî ku ileh em jî pêve girêdayîne nîne. Wê çaxê emê jî li rê û rêbazên cuda bigerin. Em wekî Kurd ne mecbûr in ileh di yek projeyê de, heta dawî bimînin û di bin her şert û mercî de bi Tirkiyeyê ve girêdayî bin. Na. Madem Tirkiye ewqas zextê li me dike, hîç tiştekî me qebûl nakê wê çaxê emê jî bikevin nav lêgerînên cuda.

Niha AKP gellek caran dibêje ku "Kurd pirranî bi min re ne", bi esasî ne rast dibêje. Kurd pirranî ne bi wana re ne. Eger bi wana re ne, madem pê bawer dikin, bila kerem bikin, em referandûmê çêkin. Helbet dewlet daxil, ji bo hemû tiştî mafê gelê Kurd jî heye. Çi kêmahiya gelê Kurd ji Tirk, Ereb û Farisan nîne. Ji bo wê yekê em dibêjin divê dewletên li ser Kurdistanê dagirker projeyê ku gelê Kurd pêşniyar dike, qebûl bikin. Ku qebûl nekin, wê çaxê bila serî li referandûmê bixin.

**Çend caran gelek aliyan, bi taybetî jî Nêçîrvan Barzanî ragihand ku ji bo Tirkiyeyê navnîşana rast, guftûgokirina li gel PKK û Ocalan e. Hûn ne di wê baweriyê de ne ku êdî Tirkiye jî ji wê yekê têgihîştiye ku nabe êdî PKK û Ocalan bên tecrîdkirin?**

Rast e, gelek derdor wekî we anî ziman çareserî wê çawa çêbibe eşkere kirine. Bi taybetî birêz Nêçîrvan Barzanî jî di ragihandinekê de ev anîbû ziman ku çareserî bi Ocalan û PKK'ê dibe. Jixwe heqîqet jî wisa ye. Ev tespît watedar in û rast in. Jixwe di pirsgirêka Kurd de çareserî encex wiha bibe.

Dewleta Tirk pir ji mêj ve hewl da ku kesên cuda bibînê, bi rêyên wan jî hewldanên çareseriyê pêşbixê, lê nikarîbû zemîna wê çêbike. Ji bo wê jî eger wê aştiyek çêbibe, rêya xwe zelal bûye. Dewleta Tirkiyeyê wê kengî vê qebûl bikê? Encex ku bibînê nikarê tesfiye bikê, mimkune qebûl bikê. Niha li ser me wekî min li jor jî anî ziman, êrîşek heye. Eger di vê êrîşa xwe de negihijê encamê, berxwedana me biser bikevê, wê çaxê wê mecbûr bimînê ku tecrîtê rakê, mecbûr bimînê êdî heqîqetê bibînê û qebûl bikê.

**Hûn vegera Kemal Burkay û vê dawiyê jî redkirina Xelata Ataturk çawan dinirxînin?**

Hevalên Kemal Bûrkay yên PSK'ê ji me re gotin ku "Kemal Bûrkay dixwazê werê welat, lê bes ne bi nasnameyeke siyasî. Dixwazê aktîf siyasetê nekê; zêdetir nivîskariyê bikê. Wekî kesekî asayî dixwazê vegerê." Me jî got, wiha baş e, em jêre tiştekê nabêjin. Ango me erênî dît. Lê belê piştî ku hat û şûnde axaftinên pêşxistî, bi taybetî li hemû kanalên AKPê yên dewletê geriya û zimanê bikar anî, hem nêzikbûnên hikûmeta AKPê û hem jî nêzikbûnên Bûrkay bi xwe eşkere kir ku li ser projeyekê hatiye.

Vaye niha AKP hemû siyasetmedarên Kurd digire û dike zîndanê. Ev gişt bê sûc û bê sedem in. Dunya alem her kes dizane ku van kesan di xebatên veşartî de cihê xwe negirtine, di xebatên çekdarî de cih negirtine. Vana gişt digirin û dikin girtîgehê, lê bes serokekî kurd ku 35-40 sal in li dijî dewletê jî, efû kir û anî Tirkiyeyê. Ev bi hev re nakok bûn. Me cardin jî got, ka wê çi jê derdikeve? Lê xuya bû ku AKP dixwazê alternatîf amade bike; ji van alternatîfan yek jî vaye Kemal Bûrkay e. Ku nebe alternatîf jî, dixwazê bêjê ku ez ne li dijî hemû Kurdan im, ez gellek Kurdan digirim gel xwe û efû dikim; lê bes ez li dijî terorê me, ez li dijî yên şîdetê bikar tînê me. Dixwazê wê raber bikê. Baş e, tu li dijî yên şîdetê bikar tînin disekinî. Ma parêzeran jî şîdet bikar aniye? Ma rojnamevanan jî şîdet bikar aniye? Ma 5 hezar siyasetmedar gişt bi çek bûn? Na.

Ya rastî min nebihîstiye ku Xelata Ataturk red kiriye ango mijara xelatê min nebihîstiye. Jixwe qebûl bikira ev tiştên min gotî, binê wê dihat mohrkirin. Xelata Ataturk çi ye?! Ev tê wateyê ku bi rastî bikin qeşmerî. Bi nêrîna min ji bo Kurdekî pêşniyara Xelata Ataturk tenê bi serê xwe niyeta xwediyê pêşniyarê zelal dike. Bûrkay, red kiriye ne kiriye ew ne girîng e. A girîng ew e ku dewlet li ser wî çi difikire? Ew ji bo çi hatiye? Di vir de jî zelal dibe ku dewlet dixwazê wî bikê çi qalibî. Gunehe ku siyasetmedarekî xwe welatparêz û sosyalîst dibîne, piştî 40 salî xwe bike vê rewşê. Dikê Xelata Ataturk bidin Kurdekî! Min ev nebihîstiye. Ez nizanim. Lê kîjan Kurd dikê vê bênamûsiyê qebûl bikê, ez wê meraq dikim.

**Bi baweriya we rewşa Esed ber bi kû derê ve diçe, man yan jî çûyîn? Amerîka dibêje, pêwîste biçê?**

Di vê çarçoveyê de li Sûriyê Rejîma Baas êdî nikarê li ser lingan bimînê. An lazime bi xwe guhertinê destpê bikê, xwe biguherînê an jî wê bê guhertin. Ango an ew bi xwe wê guhertinê bikê, ku nekê jî wê bi zorê guhertinê ferz bikin. Îro li Sûriyê guhertinek ferz e. Êdî gelên herêma Rojhilata Navîn jî ji bo azadî û demokrasiyê tevdigerin. Gelê me jixwe ev 90 sal in li hemberî zilmên dagirkeriyê, ji bo azadî û demokrasiyê berxwedana xwe heye. Em 90 sal in li hemberî vê zilmê liberxwe didin; niha gelê Ereb jî dengê xwe bi dengê Kurdan re kir yek. Ji bo wê daxwaziya me guhertin e. Em li Sûriyê jî guhertin, Sûriyeke Demokratîk-Kurdê Azad li pêş dibînin. Em çareseriya Pirsgirêka Kurd girîng dibînin. Eger pirsgirêka Kurd li Sûriyê çareser bibe, ev wê bibe zemînê demokratîkbûna Sûriyê jî.



Wêne: Rûdaw

**We di hevpeyvîneke berê de got, biryara rêxistana ETA ya ji bo danîna çekan rast e, lê hê li Tirkiyeyê ew rewş çênebûye ku em çekan danin. Eger hûn bi çend xalan rêz bikin, rewşa ku pêwîste derkeve çi ye?**

Li welatê ETA Baskê otonomî heye. Wekî hûn dizanin li Spanyayê ji bo gelên cuda mafê otonomiyê hatiye dayîn. Hem li Katalonya heye, hem li Baskê heye. Di van otonomiyan de hemû maf pêk hatine. Li welatê me Kurdistanê jî tiştekî wekî Bask, Katalonya pêwîst e. Divê Tirkiye jî wekî Spanya xwe bigehîne destûreke nû. Jixwe niha di Tirkiyeyê de mijara destûrê heye. Em dibêjin destûra Spanya dikare wekî nimûne be. Di vê çarçoveyê de we gotiye çend xal; ez xalan bihejmêrim:

*1. Divê hebûna gelê Kurd û mafên wî yên nasnameyî di warê destûra bingehîn de bê naskirin.*

*2. Mafê gelê Kurd ê xwe rêvebirinê, tu ji vê re bêjî xweseriya demokratîk, tu bêjî otonomî, tu bêjî federalî, her çi dibe divê mafê xwe rêvebirinê bê naskirin.*

*3. Divê hemû mafên çandî û perwerdeya zikmakî hebin, di warê çand û ziman de hemû netewe wekhev bin. Çi mafê Tirkan heye ewqas jî mafê Kurdan jî hebe.*

*4. Niha Serokê me û 8 hezar kadro û dilxwazên me di zîndanên Tirkiyeyê de ne. Ev hemû bêsûc û bêsedem in. Ku tu mijara şer bêjî, wana ji me bêhtir kuştiye. 17.528 kuştinên kiryarê wan nediyar (faîlî mechûl) bi talîmatên Serokê Dewleta Tirkiyeyê li Kurdistanê çêbûn, 5 hezar gundên me şewitandin û însanên me qetilkirin. Ji bo wê berî her tiştî lazime di serî de Serok APO, divê hemû girtiyên me azad bikin.*

Ji ber ku dixwazê bi çek me tune bikê em jî xwe bi çek diparêzin. Jixwe heta ku tehdîta Dewleta Tirkiyeyê, artêşa Tirkiyeyê li ser hebûna gelê Kurd, li ser destkeftiyên gelê Kurd hebe wê her gerîlla jî biçek be. Lê belê di warê destûrî de hebûna gelê Kurd qebûl bibe û di hundirê Tirkiyeyê de ti tehdîtê li ser gelê Kurd nemînê wê çaxê wê tehdîta artêşa Tirkiyeyê li ser Başûrê Kurdistanê jî rabê. Ango eger Kurdên di nava xwe de qebûl bikê, Kurdên derveyî xwe jî ne hewceye wekî dijmin bibînê û jê bitirsê. Wê çaxê tê wê wateyê ku xeteriya li ser Bakur jî, Başûr jî radibe û mijara ku tu çek deynî dikare bikeve rojevê.

## Şirove



# Wateya spasiya serokwezîrê tirk

Mahmut Kilinc

Bona qetlîama Roboskiyê, raya giştî li bendê bû ku qet nebe berpirsên vê qetlîamê ji kar bên dûrxistin. Lê hikûmetê çi kir? Serokwezîrê tirk yekser di civîna koma partiya xwe ya di parlementê da spasiya serokerkan û fermandarên arteşe kir. Li hemberî komkujiyek wiha, bi her kîjan sedemê dibe bila bibe, spasiya fermandaran bêşik şirîkatiya sûc e.

Mirov ji ber çi spasiya yekî din dike? Dema mirov ji yekî karekî bixwaze û ew jî karê xwe bêqusûr bîne cîh, bi wateya kêfxweşiyê mirov spasiya wî dike. Wateya spasiya serokwezîr ev e ku fermandaran fermana serokwezîr bêqusûr anîne cîh. Ji rewşa serokwezîr dixuyê ku bona kes an kesên Kurd ti hestên wî yên rehmanî tine ne.

Bila rayedarên dewletê bêjin ku “bi xeletî hatin bombebaran kirin.” Lê em dizanin ku parlementa tirk erka operasyonên dersînor heta salekê dêrij kir û jixwe ji bo ku operasyon bê navber bidomin, fermana serokwezîr jî tê zanîn.

Jixwe eger ez naşehîtim wezîr Beşîr Atalay, ku koordînatorê têkoşîna li dijî terorê ye, ragehandibû ku ji bo herêmên Şirnex, Colemêrg û Sêrtê “bernameyek taybetî” ya hikûmetê heye. Nehat eşkere kirin ku ew “bernameya taybetî” çi ye? Paşê civîna Konseya Ewlekariya Millî di daxuyaniya xwe da ragehand ku “têkoşîna li dijî terorê wê bi biryardarî bidome.”

Dixuyê ku “bernameya taybetî” ne ji bo xêrê, berevajî ji bo şer e.

Dîsa gellek caran hikûmetê ragehand ku hem li hundir û hem li derve, bi mebesta ku derfetên PKKê yên aborî bêne birîn, ew di nav tevgerê de ye. Herweha hêzên ewlekariyê, qaşo bi barê bargiran cixareyên “kaçax” digirtin, bi ya wana ew di bin kontrola PKKê de tê kirin. Ango bi ya hikûmetê, “kaçaxvan” bi armanca ku derfetên aborî bikevin destê PKKê vî karî dikin!

Diviyabû ev derfet bihata rakirin.

Ligel van hemî ragehandinan jî, kesî şik nebir ku miletê Kurd wê rastî hovitiyek wiha bê.

Dewletê bi vê qetlîamê fêla xwe carek din eşkere kir. Siyaseta dewleta tirk li dijî çareserkirinê ye. Ne tenê qetlîama Roboskiyê, bi giştî operasyonên dewletê, bênavber didomin û her roj nûçeyên kuştina lawên kurd di rojnameyan de wekî serketina arteşa tirk cîh digrin.

Hinek kesên nêzikî AK Partiyê dibêjin ku “eger hikûmet di siyaseta xwe de biserkeve, ango hêzên gerîlla bêne marjînal kirin (divê mirov vê weke qetilkirin bizane), dewlet wê ji bo çareserkirinê gav bavêje!”

Em bîstikekî qebûl bikin ku dewlet di vê siyaseta xwe de jidil e! Dewleta ku îro bi hêza sereke re rûnenê û bixwaze wê ji holê rake, gelo piştî serketinek wisa, ma kîjan hêz wê li meydanê hebe ku dewlet pêre rûne û pirsgirêkê çareser bike?

# "33 Gulle"



Rêbiwar Kerîm Welî

Fermandeyê Tabura Sêyem a Artêşa Tirk, Mustafa Muglali di meha Temûza 1943ê de, bi fermaneke xweser a leşkerî û bêyî dadgehîkirin, 33 rûniştevanên gundê Ozalpê girêdayê bajarê Wanê bi tohmeta qaçaxçîkirina bi pez û bizinan gullebarankir. Ev bûyera ku bi (Bûyera 33 Gulleyan) çûye nava edebiyat û dîroka siyasî ya Tirkiyeyê, weke sembola dilreqî û tundiya Tirkiyeyê, himber komeke mirovên sivîl ku tenê bo peydakirina pariyê jiyana xwe sînorên Îran û Tirkiyê derbas dikirin, hat qeydkirin.

### Piştî 68 salan ji vê dîrokê

***Cih:*** *Şirnex û ser sînorê Herêma Kurdistanê*
***Rûdaw:*** *Kuştina xweser a rêcberên Kurd*
***Kiryar:*** *Artêşa Tirkiyeyê*
***Hejmar:*** *35 Kurd*
***Tawan:*** *Qaçaxçiya ser sînor!*

Tiştek neguheriye, dîrok dubare bûye. Ji ber ku ti tiştek ser rewşa Kurdan nehatiye guhertin "em bi qaçaxî jidayik dibin, bi qaçaxî dijîn û bi qaçaxî dimirin."

Ez û Behmen Qubadî piştî nîvroya roja pêncşemê, 29ê Kanûna 2011ê ku bûyer germ e û şeva berê qewimiye, li Stenbolê ji Taksîmê berbi Nîşantaşî ve diçin cem doxtorê dil. Feqîro ev du sal in li Stenbolê dijî, dudilî û goşara derûnî ku ji ber xercî û bargiraniya fîlmê wî jê re çêbûye, bandor li dilê wî kiriye. Berî çar mehan dema ez ligel wî çûme cem doxtor û kontrolkirin jê re gotin qepaxekî dilê wî rastî romatîzmayê hatiye! Tevî ku ne metirsiye jî, lê vê yekê ew bêtir xistiye nava dudiliyê.

Grûbeke Kurdan li Meydana Taksîmê civiyane û plakarta "Katil Erdogan, Katil Erdogan" bilind kirine. Sê qasî wan polîs dora wan pêçaye, wek Tirk dibêjin "li Taksîmê polîs dizên"!

Ew çi dibêjin?

Behmen fêmkiriye, lê ne piştrast e, "dibêjin Erdoganê mêrkuj."

Hin Tirk jî li derdoran rawestiyane û bi tirs guhdariya hawara Kurdan a nerazîbûnê dikin, ew naçine nav, lê ji dûr bi kamerayên mobilên xwe wêneyan digirin.

Bûyer îro gelekî nû ye, loma Behmen baş fêm nekiriye û wisa dizane ku kesên kuştî gerîllayên Partiya Karkerên Kurdistanê bûn. Dema ez behsa bûyerê dikim, serûçavên wî têkdiçin. Ez dibêjim ku ew ne gerîlla bûn, lê hemû xelkên destkurtên sersînoran û xwediyên barên ser piştê bûn. Dema min di înternêtê de cenaze dîtin ku li ser pişta hêstiran hatibûn barkirin, dîmenên fîlmê efsaneyî yê Behmen Qubadî (Demek bo Mestiya Hespan) di nava berfê de li cem min zîndî dibûn, li wir jî her sînor, barên ser piştê, bûse, mîn û derbiderî..

Saziyên Dewleta Tirkiyeyê di astê vê bûyerê de devê wan weke telha teqiyayî lêhatiye. Her yek ji wan hewl dide sucê vê tawanê ji ser milê xwe bavêje. Serokatiya Erkanên Leşkir û Dewlet jî li şûna ku doza lêborînê bikin, sofitiyê dikin. Saziya Îstixbarata Netewî (MÎT) ji hemûyan bêtir tê tawanbarkirin ku zanyariyên şaş bi şêweyekî navendî dane hêza asmaniya Tirkiyeyê û pêdagirî ser wê yekê kiriye ku "piştrast in ku ev grûb gerîllayên PKKê ne." Karbidestekî leşkerî yê navçeyê eşkere kir ku plan û biryara cîbicîkirina vê êrîşa asimanî li Enqerê hatiye dayîn û qet pirsiyara berpirsên leşkeriyên vê navçeyê nehatiye kirin û eger Enqerê daxwaza zanyariyan bikira, wê ne tenê ji wan re zelal bikira ku ev ne PKK ne, lê wan dikarî navên sêyanî yê van her 35 kesan jî bidin û ji wan re digotin ku karê van karwan û barhilgirtine û bi haydarbûna wan vê karê qaçax dikin! Lê ev tişt pêknehat. MÎTê piştî eşkerebûna van zanyariyan daxuyanî li pey daxuyaniyê derdixe û dixwaze xwe bê sûc nîşan bide.

Karbidestên Dewleta Tirk dema çend leşkerên vî welatî di şerê ligel PKKê de tên kuştin, xulek xulek tên ser televizyonan û sloganan didin, lê di vê bûyerê de tevî ku di yekemîn demjimêra roja paştir ji wan re diyar bû ku wan şaşî kiriye û xelkên sivîl kuştine, xwe berpirsyar nedîtin û ewqas mêrxasî jî li cem wan nebû ku di xuleka yekemîn de doza lêborînê bikin. Lê xwe bi wê yekê mijûl kirin ka li aliyê Îraqê yan aliyê Tirkiyeyê li wan xistine!

Saziyên girêdayî hikûmetê hewl didin perdê li ser vê bûyerê dadin û hêncetên ji tawanê mezintir bînin û beşeke medya tirkî jî dixwaze ser vê bûyerê biaxive. Helbet eşkere ye ku tawanek hatiye encam dayîn, lê tiştek di xeyala Tirkan de nîne ji bilî tirsa tolhildana Kurdan. Ew di rojên ku leşkerên wan tên kuştin de, tevî rêberên xwe û alên Tirkiyeyê nefret li PKKê dikin, lê ew van rojan bêdeng in. Ew ne diwêrin şadiyê nîşan bidin ku Kurd hatine kuştin û ne ji nava dilê xwe jî bo vê yekê bicoşin, xema wan a mezin ew e ku Kurd bixwazin tolê hilînin, loma bêtiriya wan piştî van bûyeran li şûna ku vegerin bo wîjdana xwe û bipirsin ka leşker û hikûmeta wan çi kiriye, wan tenê programa serê sala xwe guhertin!

# Bahozek bi sûda Kurdan li navçeyê digere



Kawe Emîn

Piştî şerê Çaldiranê û di Peymana Zehaw di sala 1639ê de ku bi pratîkî Kurdistan bo cara yekê hat parçekirin, Kurdistan bû cihê pevçûna dewletên Osmanî ya Sunnî û Sefewî ya Şî`î. Kurdan weke neteweyekê bacekî pir giran ê wê parçebûn û şerê li pey re dan. Ti yek ji wan welatên ku Kurdistan dagîr kirine û her yek ji wan ji bilî bangeşeya nûjenî û dewleta modern, lê bi pratîkî ol û nasyonalîzm, yan jî baştir e bêjim mezheb û nasyonalîzmê bi awayekî ew sergerdan kirine ku tenê bo berjewendiyên xwe yên netewî û mezhebî sûd jê wergirtine. Mînak piştî damezrandina dewleta Îraqê di sala 1921ê de heya weke sala 2003yê, Erebên sunî hertim weke kêmjimarekê desthilata siyasî û aborî ya Îraqê di bin destê wan de bû, Kurd û Şî`e weke hevwelatiyên pile du rastî kuştin, raguhastin û qirkirinê dihatin.

Piştî rûxandina rejîma Saddam Huseyîn jî ligel ku piraniya post û desthilatan di navbera pêkhateyên Îraqê de bi rêya peymana pêşwext hatibûn diyarkirin, lê ji ber zêdebûna hejmara Şî`eyan postên girîng ketin bin desthilata wan û herwiha ji ber ezmûna desthilatdariya Îranê ku dema zêdeyî 30 salî ye desthilateke siyasî ya Şî`îperest a xurt damezrandiye û piraniya herî zêde ya Şî`eyên Îraqê bi lîderên siyasî jî, Îranê weke rizgarkerê xwe dibînin û beşekî wan ê zêde li dibistanên Qum û Tehranê hatine perwerdekirin, lewma pir asayî ye Şî`eyên Îraqê bo heyfhilanîna ji Sunniyên Îraqê rêyên rewa û ne rewa bikar bînin ku movika piştê ya partiya Beesê bûn, Tariq Haşimî jî di nav de ku niha li Kurdistanê ye û serê Kurdan xistiye belayê. Haşimî rast nabêje ku xwe weke zilamê aştiyê dide naskirin û qaşo piştgiriya mafên Kurdan dike, jiber ku bi pratîkî ti helwêsteke siyasî ya eşkere derbarê Kurdistanîbûna Kerkûk û deverên dagîrkirî yên din de nîşan nedaye û kesên ku di dibistana Beesê de perwerde bûne, dijwar e li xak û serweriya Kurdistanê mikur bên.

Malikî jî dixwaze bi rêya Haşimî hinek welatan bêdeng bike ku bi dirêjiya 70 salên borî piştgiriya desthilatdarên zordest û leşkeriyên Sunnî li Îraqê kirine. Tiştê girîng di vê navê de ew e ku Kurd xwe nekin beşek ji kêşeyên di navbera Sunnî û Şî`eyan de li Îraqê, belkî ji bo berjewendiya xwe ya netewî sûd ji hemû bûyeran werbigire, ew jî ne li ser hisabê şerê navxweyî, belkî zextan bixe ser aliyê Şî`e û Sunniyan da ku daxwazên Kurdan qebûl bikin û garantiya navdewletî werbigirin, jiber ku eger aloziyên Îraqê berdewam bin êdî gelek welat zerermend dibin, nemaze Amerîka ku bi hezaran leşker kir qurbanî û milyarên dolaran di şerekî de xerc kir ku niha encama wê Îraqeke ku zêdetir li sîbera Îranê diçe.

Kurd di vê demê de dikarin sûdmendtirîn neteweya Rojhilata Navîn bin, ger bikarin hikûmeteke niştimanî ya xurt damezrînin û hemû kêşeyên xwe yên ne girîng deynin rexekî û hevwelatîbûn û mafên mirovan û dadperwerî bikin bingeha kabîneya bê ya hikûmeta Herêma Kurdistanê, jiber ku eger Kurd li Başûrê Kurdistanê yek bin, êdî guherînên derdorê ne ku zererê digihînin Kurdan lê piştgiriyeke bihêz in bo ber bi serxwebûnê. Nemaze êdî Kurdên bakur û rojavayê Kurdistanê ber bi azadiyê gavan didin.

# Kîjan pêlav ji hemûyan baştir e?

Başiya pêlavan bi buha û xweşikiyê nayê diyarîkirin, lê bi çend taybetmendiyên din tê diyar kirin

Amar diyardikin ku mirovekî normal rojane 5 heta 10 hezar pêngavan davêje û eger giraniya wî kesî zêde be yan di dema kar de gelek hatin û çûyîn û rawestiyana ser piyan zêde hebe, wê demê pêlava xirab wî kesî rastî êşana pî û piştê dike. Pêlavên tendirust yan jî pêlavên baş bo wan kesên sporê dikin yan çalakiyên wan zêde ne bêtir girîng in. Ji ber ku di navbera piyên kesan de cudahî hene, bo hin kesan pêlavên binê wan req baş in, lê bo hinkan ku piyên wan rast in, pêwîst e pêlava binî nerm li pê xwe kin. Pêlavên xirab jî westiyanê du carî zêde dike.

**Beşên pêlavê**

Pêlav ji çend beşan pêktê. Beşa pêlavê ya pêşî ku jê re tê gotin sundoqa tiliyan, cihekî fereh bo tiliyan dabîn dike, çi çargoşe be yan sêgoşe. Lê cihê teng û tesk dibe sedema azardana tiliyan û bêzarkirina kesên bikarhêner û bi dirêjahiya demê jî wê şêweyê tiliyan bê guhertin.



Beşa naverast a pêlavê jî ku ji du beşên hundir û derve pêk tê, beşa derve bi erdê dikeve û bi şêweyekî giştî çiqas nerim be baştir e û goşara ser piyan û westiyana wan kêm e.

Beşa pêlavê ya dawiyê ku jê re dibêjin biniya pêlavê çiqas bilind be goşara ser pêşiya pê bêtir dike û bi şêweyekî giştî pêlava nerm baştir e.

**Pêlavên zarokan**

Zarok heta piştî temenê sal û nîvê dikarin pêxas bin yan goreke stûr li pê xwe kin. Bo dema rêveçûna zarokan jî baştir e pêlavên nerm û sivik li pê bikin. Herwiha nabe pêlavên mezin li pê wan bikin bi hênceta ku wê mezin bibin û piyên wan jî mezin dibe, ji ber ku pêlava mezin wan bêzar dike û rêveçûna wan tevlihev dike.

**Pêlavên zilaman**

Baştir e pêlavên zilamên ji wan kerestеyan çêkirî bin ku bîna piyan çênekin, cihê tiliyan teng nebe û ew pêlav nebin ku di dema rêveçûnê de deng dikin ji ber xirabiya corê maddeyên ku ev pêlav jê tên çêkirin.

**Pêlavên jinan**

Pêlavên biniyên wan bilind sedemên rasthatina azarên pişt, çok, tilî û piyan e. Nabe biniyê wan ji 3 cm bilindtir be. Pêwîst e biniya wan nerim be û pêşiya pêlavê jî fereh be, ji ber ku goşara dawiyê dikeve ser pêşiyê.

## Şêwirî bo dema kirrîna pêlavan

*√ Piyê çepê yên hin kesan ji piyê wan ê rastê mezintir e, loma pêwîst e di dema rawetiyanê de pî bên pîvan.*

*√ Di dawiya rojê û dawiya rawestiyaneke zêde mimkûn e pî bi sedema rawestiyanê hinekî mezintir bibin, loma baştir e di wan deman de pêlavê bikirî.*

*√ Baştirîn pêlava guncayî ew e ku bi kêrî piyên te yê mezin bê, bêtiriya xelkê jî piyê wan ê rastê mezintir e.*

*√ Pêwîst e pêşiya pêlavê fereh be û bi hesanî ciyê tiliyan tê de hebe.*

*√ Pêlav pêwîst e bi birêveçûnê bê ceribandin.*

*√ Li gor jimara pêlava xwe ya berê nehilbijêre, ji ber ku corên pêlavan ji hev cuda ne û dibe guhertineke hebe, belkî kêm jî be.*

*√ Ti carî pêlava teng û biçûk nekire ku bêjî wê mezin bibe.*

## Dayîkên ku qelew in, zarokên wan bi şekir dikevin

Doktorên kolêja şahane ya Brîtanî hişyarî dan wan dayikên qelew ku berî dema dûcanîbûnê giraniya xwe kêm bikin; ji ber ku qelewî metirsiyê li ser wan û zarokên wan çêdike.

Ev hişyarî jî piştî lêkolîneke kolêja pizîşkî ya şahane ya Brîtanî ya taybet bi nexweşiyên jin û jidayikbûnê hat. Ew lêkoler dibêjin qelewbûn li cîhanê bi berdewamî zêde dibe, bi taybetî jî di nav jinên dûcanî de, ku qelewiya wan dibe sedemê nexweşketina şekir û stresa xwînê û zererê digihîne zarokên di zikên wan de. Bo vê yekê jî divê dê ji ber saxlemiya xwe û zarokên xwe giraniya xwe ya zêde daxine.

Lêkolînê kifş jî kiriye ku nêzîka ji sedî 35 jinên cîhanê di dema ducaniyê de giraniya wan zêdetir dibe û ev jî wan rastî metirsiyên cuda tine. Herwiha gellek caran jî pizîşk neçar dibin ku wan emeliyatan bikin. Pizîşk amaje didin wê yekê ku zarokên wan jinan di siberojê de zêdetir metirsî li ser wan heye ku bi nexweşiya şekir û qelewbûnê bikevin.

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Di dîrokê de împaratorîyek Kurdan – Li Iraq û Sûrîyê partîyek şovenîst – Nazikî, rêzdarî (berepaş). 2- Serbestîxwaz, alîgirê azadîyê – Bi "kadîn"ê ve girêdayî, tiştên kadînê. 3- Bajarekî Kurdistanê – Li Îranê bajarek. 4- Porê ziravhûnayî (berepaş) – Îmtîhan, ceribandin – Vîn, hêz û qudreta bedenê. 5- Wekhev, yek û yek – Di îslamê de rojek mibarek – Eşîrî, malbatî. 6- Di trafîkê de sembola Holandayê – Gîhayek bejindirêj û avî. 7- Bi Ingilîzî "trên, perwerde". 8- Bîhn û parfûmek xweş. 9- Welatê Azerîyan. 10- Nehat, nayê, li paş e – Europîsche Ûnîon (Yekîtîya Ewrûpayê) – Li Swîsreyê çem û rûbarek.

**Serejêr:** 1- Huner, pîşe, keramet – Ap, mam. 2- Egoîzm, xweperestî – Raket, pal da, nivist, ket xew. 3- Vexwendin, keremkirin, nameya dawetê. 4- Xwarina ber çay û qehwê, paste (berepaş) – Navekî din yê "Hewlêr" ê (berepaş). 5- Werîn, ka, bide min – Pêk nehat, li hev nehat, nabe. 6- Qutîka axê, tasa axê – Damar, reh, kok. 7- Hişk, ne şil (berepaş) – Vexwarinek – Gotinek ecêbmayînê, na lo. 8- Sazmend, xwedîyê sazê – Êdî, ji ber vê. 9- Li Afrîkayê eşîrek (berepaş) – Agir, namûs, heya. 10- Hizin, reşgirêdan, matem, (berepaş) – Cephe, hevkarî, tifaq (berepaş). 11- Serhişkî, berevajî, vajayî. 12- Têrkirin, besbûn, qîmkirin. 13- Meha sêyem, meha Newrozê. 14- Marê mezin, cinawir. 15- Bihêle, deyne, berde (berepaş). 16- Tuneye, nema, xilas, hew.





**Bersivên hejmara 128**

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | M | E | S | R | Û | R | B | A | R | Z | A | N | Î | | T | Î |
| 2 | E | S | R | A | R | | E | | D | A | R | A | R | A | S | T |
| 3 | Z | R | E | F | | E | R | D | | R | A | M | Û | S | A | N |
| 4 | R | A | T | Î | G | | D | O | K | Û | M | E | N | T | | |
| 5 | A | R | | N | E | B | I | X | Ê | R | | | | | | |
| 6 | B | Î | R | E | W | E | R | Î | | Î | | | | | | |
| 7 | O | | A | R | Î | D | A | N | K | | | | | | | |
| 8 | T | A | Z | Î | | R | N | | R | T | | | | | | |
| 9 | A | X | A | | K | O | K | N | I | B | | | | | | |
| 10 | N | A | N | P | Ê | J | | A | B | C | | | | | | |

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Wêneyek ji Lenya...

Lenya bi coş stranan distire û ji muzîkê gelekî hezdike. Lenya diçe dibistana muzîkê jî. Lenya herwiha ji wêne çêkirinê jî gellekî hezdike. Dema ku çîrok ji wê re têne vegotin, Lenya bi baldarî li wan guhdarî dike, bi taybetî jî çîrokên Astrid Lindgren. Her şev, beriya ku Lenya bikeve xewê, li çîrokên kurdî û almanî guhdarî dike. Dema ku Lenya Besna mezin bû, gellek pîşeyên ku ew dixwaze wan bike, hene: Hinek caran Lenya dixwaze bibe pizîşk, hinek caran jî doktorê ajelan. Van rojên dawî Lenya dixwaze bibe doktorê ajelan.





## ÇÎROK

### Meşo û Tîşo



Du kûsî hebûn, navê yekî Meşo û yê din Tîşo bû û herdu hevalên hev bûn. Meşo kûsîyekî pirr bi hereket û karker bû, lê Tîşo tembel bû. Meşo her sibehê demek dirêj dimeşiya, di rê de alîkariya ajelan dikir, lê Tîşo tenê dixwar û diraza.
Meşo her digot Tîşo: "Tîşo, tu jî bimeşe, tu gellekî qelew bûyî." Lê Tîşo digot "jixwe em ajelên kêm hereket in, meşa zêde ne pêwîst e" û serê xwe datîna û diraza.
Tîşo ewqas tembel bû, her tiştekî ku diket pêşiya wî, wî dixwar. Meşo herçend digot Tîşo "xwarinên tu nasnekî, nexwe!" lê wî qet guhdarî nedikir û weke xwe dikir.
Meşo rojekê Tişo razî kir ku bi hevre bimeşin, lê piştî demeke kin Tîşo westiya û got em bêhna xwe vedin. Hema Tişo çavên xwe li xwarinê gerand, li derdorê xwe nêrî û hinek fêkiyên sor û xweş dîtin û hema avêtin devê xwe û xwarin.
Meşo pirsî: "Tişo tu nizanî ev çi ye? Nexwe!" Lê weke hercar Tişo guh neda û heya karîbû xwar. Hej xwarin dawî nebû, zikêşek giran Tîşo girt û li ser piştê ket. Meşo çi kir jî lê çare nedît, heya sibe Tîşo bi zikêşê derbaz kir. Lê ev zikêşî ji Tîşo re bû dersek mezin. Ji wir û wêda êdî xwarina ku nasnedikir nedixwar û guhdariya kesên din dikir, nexasim gotinên Meşo guhdar dikir. Paşê êdî destpêkir ku bi Meşo re jî bimeşe, bi vî awahî ji kîloyên zêde jî rizgar bû.

## Aşît



Gellek caran li çiyayên bilind berfek zêde dibare û dibe bêsûyên berfê. Ev bêsûyên berfê ji cihê xwe diqirpin û berbi jêr ve diherikin. Di vê herikandinê de çi dikeve ber, dar, kevir, ajel, mirov anjî xanî, bi xwe re dibe. Ji vê herikîn û gindirîna berfê re dibêjin aşît. Carna hind gund jî di bin aşîtê de dimînin. Li çiyayên Kurdistanê jî pirr caran aşît çêdibin û gellek xelk jî dibin qurbanî. Dema ku metirsiya aşîtê li herêmekê hebe, divê mirov xwe dûrî wan cihan bigre.

Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk

### Cudabûnên navbera herdu wêneyan de bibîne



